# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL    Hejmar: 64    03 - 09 Tebax 2015 basnews.com


Alîn Rojava:

**Huner ji dewlemendiya hunermend tê**

R16







## Barzanî:

# Vegerin rêya aştiyê

Bombardûmana balefirên Tirkiye'yê li dijî baregehên gerîlla yên li Herêma Kurdistanê û şerê di navbera PKK û Tirkiye'yê de didome gihîşt herêmên sivîl yen RHK'ê. Di êrîşa balefiran de li gundê Zergele'yê de 8 sivîlan jiyana xwe ji destda.

Di serî de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, serokwezîr, lijneya wezîran û partiyên Başûr êrîşên hewayî şermezar dikin. Herwiha di daxuyaniyên ku têne ragihandin de bang hate kirin ku Tirkiye û PKK dev ji şer berdin û cereke din vegerin rêya aştiyê. R02 - 03

## Jin beşdarî Pêvajoya Çareseriyê dibin

R12

## Şanoya kurdî li bin yek banê dicive

R15

## "Pêşmerge êdî arteşeke modern e"



Perwerdekarê Pêşmerge'yan ê ku ji destpêka şerê DAIŞ'ê virve ye li aliyekî li eniyan di nava şer de ye û li aliyê din jî li ser stratejiya şer û perwerdehiya Pêşmerge'yan wek ef-serekî kar dike Sait Çürükkaya li ser rewşa eniyan, dahatuya Pêşmerge û herêmê agahiyên balkêş dan rojnameya me. R08-9

## Cihê kurdan di peymanên nû de?

Şerê ku li Rojava di navbera hêzên kurd û DAIŞ'ê de didome bi beşdarbûna Tirkiye'yê li gel hevpeymaniyê digihîje asteke nû. Di hefteya borî de hêzên kurd li Hesekê di encama şerê dijwar de komên tundirew têk birin û qontrola bajêr ket destê kurdan. Li aliyê din danûstandinên ku di derheqê herêma tampon de di navbera Tirkiye û DYA'yê de did-omin jî dibe cihê gumanan. R04-5

BasNûçe 03 - 09 Tebax 2015


## Barzanî:

# Vegerin pêvajoya çareseriyê

Di demeke ku serxwebûn, destûra nû û hilbijartina Serokê Herêmê tê nîqaşkirin de di çarçoveya destûrdayîna Tirkiyeyê ya ji bo ji alî DYA ve li dij DAIŞ'ê bikaranîna Binkeya Hewayî ya Încirlîkê û beşdariya Enqereyê ya hevpeymana dij-DAIŞ, bazara ku di navbera Enqere û Washington'ê de hate kirin û bandora wê, li Herêma Kurdistanê bû babeta sereke ya rojevê. Piştî beşdariya hevpeymaniyê ku Tirkiyeyê tafilê çend operasyonên bêbandor li dij DAIŞ'ê pêk anî, lê belê di heman demê de li dij baregeh û kampên PKK'ê yên Qendîl, Xakurkê, Zap, Metîna, Garê û Avaşînê operasyonên mezin pêk anî, Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) xiste nav peroşiyê. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ji ber ji nû ve rûdana pevçûnên PKK'ê û Tirkiyeyê peroşiya xwe ragihand û bang li PKK'ê û Tirkiyeyê kir ku tafilê agirbestê ragihînin û pêvajoya çareseriyê bidomînin.

Ev rikberiya ku beriya hilbijartinên 7'ê Hezîranê destpê kir û di demên dawî de gihîştin asteke xeternak û bû sedem ku axa RHK'ê bê bombebarankirin, bandoreke pir xeternak li ser RHK'ê jî dike. Ev êrîşên ku li derdora Qendîlê têne kirin,dibin sedem ku qadên sivîl jî bêne bombebarankirin û qetlîam rû bidin. Lewre di encama bombebaran artêşa tirk a Gundê Zergeleyê de 9 hemwelatiyên RHK'ê jiyana xwe ji dest dan û 15 hemwelatî jî birîndar bûn. RHK, li dij vê qetlîamê bertekek tûnd nîşan da. Di daxuyaniya ku ji Ofîsa Serokatiyê hate ragihandin de êrîş hate şermezarkirin û ji aliyan hate xwestin ku şerê xwe ji dûrî Herêma Kurdistanê bikin. Di hevdîtina Rawêjkarê Wezareta Derve ya Tirkiyeyê Feridun Sinirlioğlu ku ji bo di derbarê operasyonan de RHK'ê agahdar bike de jî Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, li gel ku kêfxweşiya xwe ya beşdariya Tirkiyeyê ya hevpeymana dij-DAIŞ'ê, peroşiya xwe ya di derbarê şer de anî ziman, da zanîn ku ew jinûve destpêkirina şer û pevçûnan xeternak dibînin û xwest ku alî dîsa vegerin ser maseya diyalogê. Sinirlioğlu jî angaşt ku wan zanyariyên ku wê PKK li dij qereqolên wan dest bi êrîşên mezin bike bi dest xistiye û ji bo pêşî li van êrîşan bigirin wan dest bi operasyonan kirîye. Piştî vê hevdîtinê Sinirlioğlu derbasî Slêmanî bû, li navvendên partiyên YNK'ê û Tevgera Goran di derbarê operasyonan de berpirsên van partiyan agahdar kir û nêrînên wan guhdar kir.

### Qetlîama Zergele hate şermezarkirin

Di derbarê qetlîama Zereleyê de RHK'ê bi ser malpera xwe ya fermî daxuyaniyek weşand. Di daxuyaniyên de ji bo kesen jiyana xwe ji dest dane sersaxî û ji bo birîndaran jî şifa hate xwestin. Di daxuyaniyê de her wiha ev hatin gotin: "Ee vê bombebarana ku bûye sedemê şehîdbûna hemwelatiyên Herêma Kurdistanê şermezar dikin. Divê Tirkiye li dij sivîlan bombebaranê dûbare neke. Tu tişt ji bo van êrîşan nabe sedem. Divê êdî gelê Herêma Kurdistanê nebe qurbaniyên van êrîşan û divê hêzên PKK'ê Herêma Kurdistanê neke qada şer. " Di dawiya daxuyaniyê de hate destnîşankirin ku berdewamiya şer dibe sedemê kuştina sivîlan û ji aliyan hate xwestin ku vegerin pêvajoya çareseriyê.

### Goran bang li NY'ê kir

Tevgera Goran, ji ber bombebaran artêşa tirk, Neteweyên Yekbûyî (NY) vexwend da ku erka xwe bi cih bîne. PDK'ê jî bang li aliyan kir ku hurmetê bidine desthilatiya Herêma Kurdistanê. Di daxuyaniya ku ji alî koma Tevgera Goran a Parlamena Iraqê ve hate dayîn de hate ragihandin ku ev bombebaran bûye sedem ku li Herêma Kurdistanê sivîl jiyana xwe ji dest bidin, Gund bêne rûxandin û şênî bê war bimînin. Tevgera Goran bi ser Hikûmeta Iraqê ve daxwaz ji NY'ê kir ku li dij van êrîşan rola xwe bileyze û ji bo hurmetê şanî hukumraniya Iraqê bide zextan li ser Tirkiyeyê bike. Di daxuyaniya Goran de her wiha hate ragihandin ku 10 hemwelatiyan jiyana xwe ji dest daye.

Di daxuyaniya Koma Parlamena Kurdistanê ya PDK'ê de jî bombebaranên artêşa tirk ên li Herêma Kurdistanê hatin şermezarkirin û asta xeteriya rewşa şer hate destnîşankirin. Di vê daxuyaniya ku pêşniyaza vegera maseya diyalogê hatiye kirin de li aliyan ev têne xwestin: "Ger ku hûn aşitî û diyalogê pêk nayînin, wê gavê ji hukumraniya RHK'ê re hurmetdarbin û jiyana şêniyên herêmê tarûmar nekin." Di daxuyaniyê de her wiha hate hêvîkirin ku asayîş û geşedana RHK'ê nebe qurbanê şerê PKK'ê û Tirkiyeyê.

### Rikberiya PKK û PDK'ê tûjtir dibe

Piştî despêkirina êrîşên artêşa tirk ên li dij Qendîlê, serkirdeyên PKK'ê jî dest bi sûcdarkirina Barzanî û RHK'ê kirin. Piştî ku Cemîl Bayik di gotara xwe ya Azadiya Welat de, ji ber başnexwendina pêvajoya nû Barzanî rexne kir û bi ser konsepta şer ya nû ve Barzanî berpirsyar nîşan da û sûcdar kir, Sabrî Ok û Demhat Egît li ser bombebaranên Tirkiyeyê RHK'ê sûcdar kirin û êrîşa li dij xeta petrolê ya Kerkûk-Ceyhanê, rikberiya PKK'ê û PDK'ê hin tûjtir bû. Li dij van daxuyaniyan Serokatî û Serokwezîrtiya Herêmê jî daxuyaniyên şermezarkirinê belav kirin. Di daxuyaniya Barzanî de hate diyarkirin ku tiştê ji destê wan tê tenê ew e ku bala diyalogê li aliyan bikin û hatiye gotin ku bi qasî Erdoğan, baskekî ku di nav PKK'ê de ye jî di vê mijarê de sûcdar e. Ji alî din ve Lijneya Wezîrên Hikûmeta Herêmê jî ji ber ku li dij xeta petrolê êrîş pêk anîye PKK hate rexnekirin û bi hinceta ku bûye sedemê birîna risqê gel hate tawanbarkirin. Di vê daxuyaniyê de ji PKK'ê hatiye xwestin ku di vê dema ku qeyraneke aborî tê jiyîn de dev ji êrîşên bi vî rengî berde.

### Barzanî: Divê hewla dij-DAIŞ a Enqereyê nebe sedemê rikberiya kurdan

Li gel van geşedanên neyênî, di van rojên dawî de li Hewlêrê dîplomasî jî bi lez dimeşe. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, Balyozên Bexdayê yên Îngilîstan û Almanyayê Frank Baker û Eckhard Bruce yek bi yek qebûl kir. Barzanî di serdanên balyozan de rewşa dawî ya herêmê nirxand. Barzanî beşdariya Tirkiyeyê ya hevpeymana dij-DAIŞ'ê wek gaveke erênî û diyarker nîşan da û got: "Lê divê ev hewla dij-DAIŞ a Enqereyê nebe sedemê rikberî û operasyonên li dij kurdan. Em destwerdana siyasetên PKK'ê û Tirkiyeye nakin û me her piştgirî da pêvajoya çareseriyê. Kurd, rastiyeke Tirkiyeyê ne û divê bêne dîitin. Em hêvî dikin ku her dû alî dest ji şer berdin û ji nû ve vegerin rêbaza diyalogê.

Barzanî'yê ku di serdana Fermandarê Hêzên Navendî yên DYA'yê Llyd Austin de, li gel vê meseleyê, her wiha mijarên şerê li dij DAIŞ'ê, dabînkirina pediviyên Hêzên Pêşmerge û amadekariyên artêşa Iraqê gotûbêj kir, bi rêya têlefonê, bi Wezîrê Derve yê Almanya Frank Walter Seinmeier re jî heman mijaran axivî. Barzanî bi Seinmeier re her wiha li ser alîkariyên ji bo Hêzên Pêşmerge ku hatibûn plankirin, rewşa penaberên şer û alîkariyên ku wê Almanya ji bo wan bike jî axivî.

Ji alî din ve Balyoza Avûstralya ya Bexdayê Lendel Sakis jî ji ber 4 salê maweya peywirdariya xwe temam kir, ji bo xatirxwestinê serdana Barzanî kir. Di serdanê de Sakîs da zanîn ku di maweya peywira xwe de wê rojên pir xeternak jiyaye, lê belê ew bi hatina Herêma Kurdistanê û dîtina xweşiya wê û xebatên parastina penaberên şer pir şad û bextewar bûye. Sakis her wiha da zanîn ku ji bo pêwendiyên dostane yên navbera her dû welatan ew ê her di nav hewldanan de be. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî di karê wê yê nû de ji Sakis re serkeftin xwest û ji ber piştgiriya Pêşmerge û RHK'ê ya welatê wê spasiyên xwe peşkêş kir. Barzanî got: "Barê vî şerê giran xistin ser milê kurdan. Di dîrokê de kurd her alîgirê aştiyê bûn, lê belê her carê ji bo şer bikin kurd hatin bêçarkirin. Lê belê tekoşîna qehremanî ya Pêşmerge ya li dij DAIŞ'ê vê qedera reş têkşikandiye û ev yek ji bo me serbilindî ye."

### Hewla Îranê ya şandina Amiri ya Hewlêrê!

Yek ji geşedanên grîng ên dîplomatîk jî bêguman serdana Hewlêrê ya Cîgirê Sekreterê Giştî yê Lijneya Asayîşa Neteweyî ya Îranê Ahmed Amîrî bû. Amîrî û lijneya pê re ku ji alî Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ve hatin qebûlkirin, di derbarê peymana enerjiya nukleerî ya ku Îran û dewletên 5+1'yê bi hev re îmze kirin û geşedan û guherînên dawî yên li herêmê de Barzanî agahdar kirin. Di vê hevdîtina ku di derbarê ziyana DAIŞ'ê ya siyasî, aborî û bîrdozî ya li herêmê de danûstendina ramanî pêk hat de Amîrî got ku asayîş û aramiya Herêma Kurdistanê ji bo Îranê pir grîng e. Di hevdîtinê de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî parasvaniya Pêşmerge ya li hember DAIŞ'ê destnîşan kir û got ku ev parastin ji bo asayîş û aramiya Rojhilata Navîn û hemû dinyayê cihê şanaziyê ye.

Ji alî din ve PDK'ê, bi peyameke nivîskî li hember daxuyaniya Serokkomarê Îranê Hesen Rûhanî ku gotibû, "Îran, Hewlêr, Slêmanî û Duhokê diparêze" bertek nîşan da. PDK'ê di peyama xwe de ji bo alîkariya hemû welatên dinyayê û bi taybetî ya Îranê ku di destpêka şerê DAIŞ'ê de kirin spasiyan pêşkêş kir û got: "Ev daxuyaniya Hesen Rûhanî ya ku li bajarê Rojhilatê Kurdistanê Sineyê daye ji alî me ve cihê nerazîbûnê ye; Lewre divê qehremaniya hêzên Pêşmerge ku di vî şerî de xwîna xwe rêtiye û bûye cangorî neyê ji bîrkirin. Di vî şerî de nêzîkî 1200 Pêşmerge şehîd bûne û 7 hezar jî birîndar bûne. Pêşmerge ji bo parastina welatê xwe vê axê bi xwîna xwe av daye. Divê gelê Sine zanibe ku Pêşmerge mertalê gelê Kurdistan û hemû gelên herêmê ye."

### 'Tekane hevkarê Rojava kurd in'

Piştî rûdana şerê navxweyî yê Sûriyeyê DAIŞ'ê bi destxistina çekên artêşa Sûriyeyê û piştî ku artêşa Iraqê jî Mûsilê jê re hişt û reviya hemû çekên giran ên artêşa Iraqê ketin destê DAIŞ'ê û DAIŞ di warê çekdarî de bû hêzeke mezin û bi vê hêzbûnê re dest bi êrîşî Herêma Kurdistanê kir. Di wê kêliya êrîşên DAIŞ'ê de bêdengmayîna Tirkiyeyê hem li cem Ewropa û Amerîka û hem jî li cem Herêma Kurdistanê bû cihê nerazîbûnan û têkiliyên Tirkiye û van aliyan derb xwarin. Di vê rewşa ku Tirkiye bêdeng ma û Sûriye û Iraq jî ji hêz de ketin de wek tekane hêza bejayî ku dikare li pêş DAIŞ'ê raweste kurd derketin pêş û ev yek bû sedem ku kurd vî wêneyê şanî cîhana rojava û DYA'yê bidin ku li Rojhilata Navîn tekane hêza ku dikare bi wan re hevkariyê bike kurd in. Ji bilî bêtir tekûzkirina yekîtiya neteweyî, hem li Başûrê Kurdistanê ji ber mercên meydanî bidestxistina herêmên bi nakok ku statuya wan ne diyar bû û hem jî li Rojavayê Kurdistanê bi serkeftinên Kobanê û Grê Spî kurdan dikaribû şanî dinyayê bidin ku ew dikarin vî rolî hilgirin ser milên xwe. Piştî ku DYA û Tirkiye li ser birakarîna ji bo li dij DAIŞ'ê ya Binkeya Hewayî ya Încirlîkê li hev kirin û Tirkiye bi vê hewlê xwest ku di navbera Kobanê û Efrînê de herêmeke parastî pêk bîne, lê belê hem ji alî NATO û hem jî ji alî DYA ve hate redkirin. Ev yek jî dide xuyakirin ku hem li Başûr hem jî li Rojava hê jî hevkarê herî kêr hatî kurd in.

### Serokê CIA'yê Hayden: Divê kurd rasterast bêne biçekkirin

Dîrektorê CIA yê Berê Mihael Hayden di derbarê geşedanên siyasî û şer ên Rojhilata Navîn de pirsên rojnameya Alman DIE WELT bersivand û di derbarê siberoja Kurdistanê de daxuyaniyên grîng da. Hayden diyar kir ku dewletên Sûriye û Iraqê wesfên xwe yên dewletiyê wunda kirine, li herêmê kurd hevkarên herî bikêrhatî yên DYA'yê ne û ji ber vê yekê divê kurd rasterast bêne biçekkirin. Hayden angaşt ku Obama di çarçoveya yekperçemayîna Iraqê de ye û rasterast biçeknekirina kurdan jî delîla vê siyasetê ye. Hayden got: "Ji bilî rizgarkirina Tîkrîdê ku ew jî bi saya milîşeyên şîa pêk hat, dewleta Iraqê li dij DAIŞ'ê tu serkeftinekê bi dest nexistiye û ez ne bawer im ku wê dikaribe Mûsilê jî rizgar bike." Hayden van agahiyên xwe bi daneyên dîrokî rave kir û got: "Di dîrokê de jî tê dîtin ku dewleta Osmanî vê herêmê wek parêzgehên kurd, sunne û şîa dabeş kiriye û ev rastiya dîrokî wek meseleyeke rojanebûyî ji nû ve derketiye pêşberî cîhanê. Ji ber vê yekê Sûriye û Iraq êdî nikare bibin dewletên berê ku bi hêz û yekperçe bûn. Divê alternatîfên din bêne pêşnûmandin û ji bo vê yekê jî divê kurd rasterast bêne biçekkirin."

### Piştî Obama siyaseta DYA ya Kurdistanê diguhere

Di vê pêvajoya ku di qada navneteweyî de li ser modêlên çareseriya qeyrana li Iraqê nîqaş têne kirin de Generalê Amerîkî Joseph Dunford'ê ku tê payîn wê bibe Serfermandarê nû yê DYA'yê ragihand ku ji bo çareseriya qeyranê rêbaza herî baş serxwebûna Kurdistanê ye. Dunford'ê di rûniştina Lijneya Hêzên Çekdar a Senatoyê de ku wê biryara erkdarkirina wê ya serfermandariyê bide de pirsên senatoran ên di vê bareyê de bersivand û diyar kir ku di warê dewletbûnê de kurd û şîa ji sunneyan şarezatir in. Dunford, da zanîn ku di derbarê sewqiyata çekên ji Iraqê re hatine şandin de hin pirsgirêk derketine û got: "Ger ku ez ji bo serfermandariyê bême erkdarkirin, wek şexs ez ê biçime Herêma Kurdistanê û ez ê vê pirsgirêkê bişopînim. Daxuyaniyên Hayden û Dunford didin xuyakirin ku piştî Obama, wê meyla siyaseta DYA ya di derbarê kurdan de ber bi xurtkirina têkiliyên bi kurdan re biqelibe.

### Dûbendiya destûra serxwebûn an jî federasyonê

Parlamentê Berê yê Lîsta Kurd a Parlamena Iraqê Sîrwan Abdula ji BasNûçeyê re ragihand ku şandina petrola Herêma Kurdistanê ji bo Bexdayê dom dike, lê belê Bexda hê jî budceya Kurdistanê naşîne. Abdula da zanîn ku Hikûmeta Navendî ya şîa, li gel kurdan, daxwazên hemû pêkhateyên Iraqê piştguh dike û ji ber ku hê jî hêvîdariya xwe ya ji Bexdayê diparêze Hikûmeta Herêmê rexne kir. Abdulla got: "Bexda bi vê xweşbîniya kurdan tinazan dike. Ji ber vê yekê divê Hikûmeta Herêmê helwesteke ciddî nîşanî Bexdayê bide." Di derbarê nîqaşên li ser şêweyê hilbijartina Serokê Herêmê de jî Abdullah rexne li hemû aliyên kurd kir û got: "Di demeke ku Herêma Kurdistanê di direjahiya 1200 kîlometir de li hember dijminekî dirinde şer dike de, bi ser pirsgirêkeke wiha piçûk afirandina qeyraneke ev çend mezin nayê qebûlkirin. Ev, pirsgirêkeke pir mezin nîne û divê nebe. Lê ji ber ku em ne dewlet in ev pirsgirêk wiha têne mezinkirin. Heta em nebin dewlet wê pirsgirêkên wiha derkebin û em ê enerjiya xwe bi vî awayî xerc bikin." Sîrwan Abdulla angaşt ku sedemê vê qeyranê ew e ku heta niha ev pirsgirêk nehatiye çareserkirin û dom kir: "5 sal berê mijara nivîsandina destûra nû hate rojevê. Lê belê ev kar her hate taloqkirin û ji ber vê yekê em bêçar man di demeke wiha ku şerekî dijwar û pê ve grêdayî qeyraneke siyasî û aborî heye de em vî karî bikin." Li ser pirsa me ya; 'Gelo ev destûra nû li ser binema Kurdisataneke serbixwe yan Kurdistaneke Federal tê nivîsandin?' jî Abdullah got: "Destûra nû li ser binemaya Kurdistaneke Federal ku grêdayî Iraqê ye tê nivîsîn û di demeke wiha ku Iraq wek defakto perçe bûye de nivîsandina destûreke wiha dûbendiyeke din e."

### Hêzen navnetewî Tirkiye hişyar kirin

Tirkiye ku bi mebesta pêşî li yekbûna Rojava ku piştî stendina Grê Spî gihaneka wê ya yekem temam bû û hewl dihatin dayîn ku bi hevgihandina Kobanê û Efrînê gihaneka dûyem jî bê temamkirin, bigire daxwaza pêkanîna herêma Parastinî ku ji destpêka şerê navxweyî yê Sûriyeyê ve dihanî ziman, piştî beşdariya hevpeymaniya dij-DAIŞ'ê dîsa dûbare kir. Le belê wek her carê, vê carêjî ev daxwazî ji alî NATO û DYA'yê ve hate redkirin. NATO û DYA'yê di derbarê operasyonên li dij PKK'ê de jî banga rawestandinê li Tirkiyeyê kirin. Di civîna awarte ya Lijneya NATO'yê ku bi daxwaza Tirkiyeyê pêk hat de ev her dû mijar jî hatin nîqaşkirin, lê belê di encama civînê de biryarên ku wê Tirkiyeyê razî bike derneketin. Di civînê de, Sekreterê Giştî yê NATO'yê Jens Stoltenberg di derbarê daxwazên Tirkiyeyê ya herêma parastinî de got ku NATO ne aliyê vê meseleyê ye. Divê Tirkiye vê meseleyê bi DYA'yê re nîqaş bike û Tirkiyeyê hewaleyî DYA'yê kir. Berdevkê Wezareta Derve yê DYA'yê John Kirby jî di derbarê mijarê de diyar kir ku di perspektîva DYA û hevpeymanê de pêkanîna herêma parastinî tune ye û got: "Niha pêdviya me bi tiştekî wisa tune ye.

Ji alî din ve, di derbarê vê mijarê de hişyariyek jî ji Serfermandarê Îranê Hesen Fîrûzabadî hat. Fîrûzabadî, êrîşa Tirkiyeyê ya li dij kurdan wek şaşiyeke stratejîk destnîşan kir û got: "Bi ser navê operasyona li dij DAIŞ'ê, pêkanîna operasyonên li dij kurdên ku li hember DAIŞ'ê têdikoşîn şaşiyeke stratejîk e."


Nizamettin Taş

### Serxwebûn xala mayînde ya rojevê ye

Li gel vê rewşa xeter a li Bakur jî, li Başûrê Kurdistanê ji bo li ser binemayeke pihêt bê avakirin di derbarê serxwebûnê de xebat û çalakiyên dîplomatîk bê navber didomin. Di vê pêvajoya ku li ser derfetdariya şert û mercên serxwebûnê nîqaş gurr bûne de, ger ku mijara şêweyê hilbijartina serokê herêmê de çareseriyeke hevbeş pêk bê, ji bo serxwebûnê tekane asteng di bin banê Wezareta Pêşmerge de yekdestkirina hêzên Pêşmerge dimîne. Di derbarê mijarê de Rêveberê PKK'ê yê Berê Nîzamettîn Taş ji BasNûçeyê re ragihand ku wek asteng, goncaviya hevsengiya stratejîk a Rojhilata Navîn grîngtir e ji pirsgirêka yekîtiya neteweyî û teqez kir ku wê pirsgirêka şêweyê hilbijartina Serokê Herêmê ku YNK û Tevgera Goran bûne sebeb bê çareserkirin. Taş got: DYA, Almanya û welatên din ên rojavayî di derbarê serxwebûna Kurdistanê de her çiqas niha bêalî bin jî, di stratejiyên xwe yên demdirêj de wê serxwebûnê pêkan bikin. Li Iraq û Sûriyeyê piştî ku DAIŞ bê têkşikandin û aramî serdest bibe, wê ji bo serxwebûna Kurdistanê mercên herêmê û yên navneteweyî bêtir pêkan bibin. Niha tenê wek fermî dewleteke bi navê Iraqê heye û ev dewlet bi gopalê DYA û Îranê li ser piyan tê hiştin. Ev dewlet ji xwe bixwaze jî nikare budceya Herêma Kurdistanê bişîne, lewre pereyên wê tune ne. Çavlirêmayîna şandina budceyê ya vê dewleta ku nikare xwe bi rê ve bibe pir bêwate ye."

Nîzamettîn Taş di derbarê pirsgirêka yekîtiya navxweyî ya Herêma Kurdistanê de jî anî ziman ku partiyên siyasî yên gelên ku serxwebûna xwe bi dest nexistinê ji mudaxeleyên derveyî re zêdetir vekirî ne û helwesta YNK'ê û Tevgera Goran jî di vê çarçoveyê de nirxand û dom kir: "Ev rewş nayê wê wateyê ku ev partî dijminên yekîtiya neteweyî ne. Lê belê piştî ragihandina serxwebûnê wê ev partî jî rehetiya rizgarbûna ji bin nîrê Îranê bijîn. Jixwe ger ku hevsengiya stratejîk û rewşa siyasî û aborî ji bo serxwebûnê derfetdar bibe, ne ev partî û ne jî partî yan rêxistineke din nikare li pêş serxwebûnê bibin asteng. Nîzamedîn Taş di derbarê şer û pevçûnên ku di nav Tirkiye û PKK'ê de ji nû ve rû dan de jî van nêrînên xwe bi me re parve kir: "Di encama hilbijartinên 7'ê Hezîranê de, HDP'ê serkeftineke ji sedî 13 ku ne wê ne jî PKK'ê hêvî dikir bi dest xist. Ev ji bo siyaseta Bakur deskeftiyeke mezin a siyasî bû. Lê belê Dewleta Tirkiyeyê hem ji ber ku vê serkeftinê danexurtand û xwest ku van destkeftiyan têk bibe û hem jî ji ber ku xwest pêşî li yekbûna erdnîgarî ya Rojava bigire, jixwe ji destpêkê ve meyldarê destpêkirina şer bû. Lê belê PKK bi kuştina dû polîsan kete vê kemîna Dewleta Tirkiyeyê. Ji bo siyaseta Bakur, ev rewşa şer di xwe de egeriya xeteriyên pir mezin dihewîne."

# Cihê kurdan di peymanên nû de çi ye?



**Mehmet Salih Batırhan**

DAIŞ'a ji ber valahiya siyasî ya li Rojhilata Navîn, xwe li Iraq û Sûriye'yê bi hêz kir di nava kurtedemekê de bû organîzasyoneke gelekî bihêz û li herêmê dest bi kontrolkirina gelek derdorê kir. Her wiha li hêla din DAIŞ'ê rêyên neft û bazirganiyê jî bidest xistin û êrîşî Kurdistaê kir. Her wiha kurdên Rojava yên di sala 2011'dan xwe bi rêxistin kirin û li hember peymanên beriya sedsala yên li ser Kurdistanê hatine sepandin derketin û dest bi parastina xaka xwe kirin. Dewletên dagirker ên Kurdistanê jî niha di nava hewldana denin û kurdan weke "xetere" nîşan didin. Li hêla din dezgehên medyayî yên dagirkeran jî li hember kurdan dest bi şerê psîkolojîk kirin.

Tirkiye ku zêdeyî 2 salan bi DAIŞ'ê re cîrantî kir û li hember tehrîbata DAIŞ'ê a li Rojava bêdeng ma û piştevaniya opozîsyona Sûrîye'yê kir piştî destkeftiyên kurdan ên li Rojava di polîtîkaya xwe ya Surîye de dest bi guhertinan kir û hefteya borî li Cerablûsê beregeyên DAIŞ'ê bordûman kir.



Hinartina leşker û teqemeniyan a ji bo sînorê Rojava û operasyona 24'ê tîrmehê ya li hember DAIŞ'ê hatiye kirin Tirkiyê bi biryar nîşan bide jî, di encamên binçavkirin û operasyonên navxweyî yê li hember DAIŞ'ê de tu endamên DAIŞ'ê nehatin girtin û ew piştî lêpirsîna emniyet hatin berdan û di derbarê aqûbeta wan de ji raya giştî re tu agahî nayên dayîn.

Rawêjkarê Wezareta Karên Derve yê Amerîkayê Mark Toner, di derbarê operasyonên dawî yên li hember DAIŞ'ê rawestiya û di koferansa rojnamevanî de axivî. Toner eşkere kir ku ew ê balafirên hevpeymaniyê yê Firokexaneya Leşkerî a Încîrlîkê bikar bînîn ew ê di piştevaniya YPG'ê de berdewam bin. Her wiha Toner da zanîn ku kurdên Rojavayê Kurdistanê li hember şerê DAIŞ'ê di bi erka xwe radibin. Li hêla din ji hêla rayaderan Tirkiyê ve di derbarê rewşê de daxuyaniyên cuda tên belav kirin û ev jî bû cihê fikaran û ji hêla raya giştî ve weke 'dijberiya kurdan' hat binavkirin. Li hêla din piştî Tiffaqa Încîrlîkê ya di navbera Amerîka û Tirkiyê de êrîşên Tirkiyê yên ser beregehên PKK'ê û bomberbarankirina xelkê sîvîl ên Herêma Kurdistanê, firrîna balafirên şer a li ser Kobanê û gulebarankirina şervanên YPG'ê bû sedem ku cihê kurdan a di nava koalîsyonê de bê nirxandin.

## NY: Divê stratejî berfireh be

Serokê Neteweyên Yekgirtî Ban Kî Moon ê di Konseya Ewlekariyê ya di 29'ê tîrmehê de axivî û wî jî bal kişand ser peywendiyên di navbera Amerîka û Tirkiyê û behsa polîtîkayên li ser Sûriyê kir. Ban Kî Moon di berdewamiya axaftina xwe de ragihand ku rewşa Sûrîyê divê bi tena serê xwe neyê eşkere kirin û geşedanên li herêmê rê li ber vê yekê vekirine. Li hêla din Ban Kî Monn da zanîn ku dicê stratejiyeke berfireh bê eşkere kirin û li gor wê yekê kar bê kirin. Daxuyaniyên NY'yê û tîffaqa Amerîka û Tirkiyê didin zanîn ku ew ê di serî de li Rojava û li seranserê tiştên nû rû bidin.

Li hêa din Tirkiyê di çerçoveya Tiffaqa Încîrlîkê de li herêmê Cerablûs û Merayê dest bi avakirina herêmeka tampon dike. Hat zanîn ku herêma Tirkiyê ava dike ji 90 kîlometreyî pêk tê û firehiya herêmê jî ew ê ji 40-50 kîlometreyî pêk were. Digel avakirina herêma tampon hat zanîn ku ew ê di bin kordînasyona MÎT'ê de li Cerablusê yekîneyeke ji 5 hezar tirkmenan pêk tê ava bibe.

## Şoreş Hesen: Tirkiyê kiyarên DAIŞ'ê dike

Berdevkê YPG'ê Şoreş Hesen li ser polîtîkaya nû ya Tirkiyê rawestiya û daxuyand ku Tirkiyê guh nade peymanên navneteweyî û ew an peymanan bin pê dike. Her wiha Hesen eşkere kir ku balafirên şer ê Tirkiyê li ser asîmanên Rojava diçin û tên û ji sînor jî leşkerên tirk gundewarên Rojava gulebaran dikin. Di berdewamiya axaftina xwe de jî Hesen ragihand ku divê Tirkiye helwesta xwe ya li hember wan zelal bike û wiha tevbigere. Hesen wiha berdewam kir: "Divê Tirkiyê helwesta xwe ya li hember Rojavayê Kurdistanê eşkere bike. Weke ku me di destpêkê de digot. Tirkiye ji ber alîkariya li DAIŞ'ê di dîplomasiya navdewletî de bi tenê bû. Tiştên çêdibin nû ne. Karê ku DAIŞ'ê nikarîbû bikira niha Tikiyê dixwaze bike. Tirkiyê karê DAIŞ'ê girtiyê ser milên xwe."

Şoreş Hesen pirsa me ya 'Pîştî hemahengiya Tirkiyê û Amerîkayê gelo ew ê helwesta koalîsyonê û Amerîkayê li hember kurdên Rojava biguhere?' jî bersivand û wiha berdewam kir: " Helwesta me ya li hember terorê diyar e. Em xwe wek hêza bejayî ya koalîsyonê dibînin. Ji roja despêkirina şer heta niha em di nava şerdene. Amerîka û hevpeymanî vê berxwedana me dibînin û didin zanîn ku ew ê di pitgirîkirina me de berdewam bin."Hesen her wiha da zanîn ku ew li bendêne ku Tirkiyê jî bi wan re hemaheng be û di şerê li hember DAIŞ'ê de piştevaniya wan bike.



## Hevseoka PYD'ê Asya Abdullah: Ewê planên Tirkiyê pêk neyên

Hevseroka PYD'ê Asya Abdullah li ser operasyonên hewayî yên Tirkiyê hemahengiya Tirkiyê û hevpeymaniyê rawestiya û ji BasNûçeyê re axivî. Abdullah ragihand ku kurdên Rjava li hember DAIŞ'ê tê dikoşin û ew lerê faşîzma DAIŞ'ê dikin û xelkê sivîl diparêzin. Abdullah li hêla din bal kişand ser hemagiya Tirkiyê ya bi hevpeymaniyê re û da zanîn ku divê Tirkiye rola baş bilîze. Her wiha Abdullah amaje bi wê yekê jî kir ku eger Tirkiyê li Rojava herêmeke tampon ava bike ew ê bibe sedeme nakokiyan di navbera wan û Tirkiyê de û divê Tirkiyê dev ji van polîtîkayên xwe berde û ew ê ji tu kesî re nebin xetere.

Di berdewamiya axaftina xwe de Abdullah li ser avakirina yekîneyeke tirkmen a li herêma Cerablûs û Mera jî rawestiya û ragihand ku ew ê plan û bernameyên Tirkiyê yê li ser Rojav diselmînê ew ê pêk neyên û Tirkiyê piştî şikestina DAIŞ'ê ya li Rojava dixwaze peyaman bide me. Eger projeyeke Tirkiyê hebe projeyeke me jî heye. Plana me jiyana hevpar e." Di berdewamiya axavtina xwe de Abdullah li ser daxuyaniya Hevserokê PYD'ê Salih Muslim ê 'Em gelekî spasiya Herêma Kurdistanê dikin ji me re gelek çek û teqemenî şandin.'jî rawestiya û eşkere kir ku gelê kurd û Kurdistan di qonaxeke nû re derbas dibin û divê hevgirtin û yekgirtina wan ji berê gelekî bi xurttir berdewam bike.

## Li Hasekê nefta kurdan

DAIŞ'a li gelek herêmên Rojava li hember hêzên kurd şikestin xwar û di serê meha tîrmehê de êrîşî Hasekê kir i hevkariya rejima Sûrîyê, koalîsyon û hêzên kurd ji doûbera bajêr hat derxistin. Li hêla din ajansa nûçeyî ya AFP'ê da zanîn ku rêveberiya kurd a li Rojava li dorûbera herêma Hasekê Rimêlanê dest bi derxistina neftê kirine û neft êdî ji bîrên neftê yên herêmê neft tê derxistin.

## Rawêjkarê Wezareta Neftê yê Rojava Silêman Kalaf: Neft êdî tê derxistin

Li hêla din Rawêjkarê Wezareta Neftê yê Rojava Silêman Kalaf, ji AFP'yê re axivî û da zanîn ku careke yekeme ku kurd bi awayekî xweser neftê derdixin û jê îstîfade dikin. Beriya krîza li Sûriyê nefta li herêmma Rîmêlan ji ser xeta neftê ya ji bo Banyas û Humusê dihat şandin. Her wiha kalaf eşkere dike ku xeta neftê jî di encama şer de hatine teqandin û hinartina neftê bi dawî bibû.Kalaf amaje bi wê yekê jî kir ku li herêma Rimêlanê zêdetirî 1300 bîrçn neftê hene û niha ji wan bîran neft tê derxistin.

## Bi rejimê re tifaqa neftê?

Ajansa AFP'ê amaje bi wê yekê dike ku Rejima Sûriyê û kurd du çerçoveya bazirganiya neftê de li hevkirine û tifaqek di navbera wan de heye. Her wiha li gor veguhestina ajansê Rawêjkarê Wezareta Neftê yê Rojava Silêman Kalaf eşkere kiriye ku Rejima Sûriyê ji bo derxistina neftê alîkariya teknîkş dide wan û ew bi hevre kar dikin. Her wiha li gor zanyariyên li ber dest rejima Sûrîyê jî mûçeya



memûrên xwe yên herêmma dişîne û e memûr di derxistina neftê de berdewam in. Di berdewammiya axaftina xwe jî de Kalaf amaje bi eê yekê jî kir ku egera wê heye ku ew û rejim li hevdû bikin lewre wan bi hevre bajarokê Hasekê û herêma neftê parastiye.

Rojnameger û nivîskar Ciwan Nebî, ji rojnameya me re axivî û da zanîn ku li derdora herêma Rimêlanê zêdetirî 150 bîrên neftê hene û gelek ji wan kar dikin. Her wiha Nebî da zanîn ku piştî şikestina DAIŞ'ê a li dorûbera Hasekê derxistina neftê zêde bûye û karkerên rejimê yên neftê jî li ser karê xwe ne û kurd û rejim bi hev re neftê derdixin. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Nebî amaje bi wê yekê kir ku ew nikarin tekez bikin ku peyman di navbera rêveberiya kurd û rejimê de heye lê ew bi hev re kar dikin. Nebî wiha berdewam kir: "Bîrên neftê ji mêjve ye henin û dixebitin. Memûrên rejimê li vira nin û dixebitin. Hem Esed neftê dixwe û hem kurd neftê dixwin."

## Li Efrînê jî şer dest pê kir

Herêma Efrînê ya ku ev demeke dirêje şer û pevçûûn lê tunene jî pevçûnan rû dan. Li gor zanyariyên ji eniyan şer hatine wergirtin rêxsitina El Nûsra



ya bi ser El Kaîdêyê veye êrîşî xelkê sîvîl kiriye û hêzên kurd jî bersiva êrîşên wan daye. Her wiha hat zanîn ku li herêmê pevçûnên dijwar dest pêkirine û şerê li Şêrawa, Cindirêsê dest pêkiriye bi giranî berdewam dike. Li gor serçaviyên heremê li Gundê Çelebiya, li rojhilatê Ezazê, li derdora Meyremînê şer bi giranî berdewam dike.

## Hevseroka Kantona Efrînê Hêvî Mistefa: DAIŞ û El Nuûsra yek in

Hevseroka Kantona Efrînê Hêvî Mistefa ji rojnameya me re behsa rûdana şer û pevçûnên dawî kir û eşkere kir ku destê Tirkiyê di pêkhatina êrîşan de heye. Her wiha Hêvî amaje bi wê yekê jî kir ku El Nûsra li bajarê Îdlîbê ji hêla Tirkiyê ve tê piştgirî kirin û El Nûsra bi piştevaniya lojîstîk êrîşî wan kiriye. Mistefa helwesta Tirkiyê bi ti tûndî rexne kir û wiha got: "Hevalbenda Tirkiyê DAIŞ têk çû. Tirkiye ji xwe re li hevalbendên nû digere. Niha jî Tirkiyê El Nûsrayê bi ser me de dişîne. Ferqa wan ji hev tuneye. Em amadene Rojava biparêzin."



## Yekîneya tirkmenan tê avakirin

Piştî tiffaqa di navbera Amerîka û Sûriyê de Tirkiye bi lez û bez ke nava hewldana ku plana xwe ya Rojava û Sûriyê pêk bîne. Her wiha li gor agahiyan di bin kordînasyoan MÎT'ê de cîvînek hatiye li dar xistin û 20 rêxistinên tirkmen beşdarî civînê bûne. Her wiha amaje bi wê yekê tê kirin ku ew ê ji tirkmenan yekîneyeke ji 5 hezar kesî pêk tê bê ava kirin. Her wiha kite kitên daxuyaniya Serokvezîrê Tirkiyê Ahmet Davutoğlu ya " Em êdî DAIŞ'ê li sînorê xwe nabînin. Em ê çi bikin em dizanin...." jî eşkere dibin.

## Endamê PDK-S Mistefa Oso: Êrîşên ser ENKS'ê berdewam dikin

Li hêla din êrîşn ser partiyên muhalefta kurd jî berdewam dikin. Hat zanîn ku hefteya borî, Serokê Lêvegera Siyasî yê Hasekê Mahmud Ocê, ji hêla hin endamên PYD'ê hatiye revandin. Endamê Partiya Demokrata Kurdistana Srûriyê Mistefa Oso li ser revandin û fişara endamên ENKS'ê rawestiya û da zanîn ku êrîşên li ser ENKS'ê ji hêla PYD'ê tên kirin û PYD'ê ji bilî xwe tevgereke siyasî qebûl nake.

Di berdewamiya axavtina xwe de Oso da zanîn ku di bin çavdêriya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî de Peymana Duhokê hat duristkirin û lê belê ew ji karîgeriyê hat derxistin. Di berdewamiya axaftina xwe de Oso daxyand ku Mesûd Barzanî hewl dida ku kurd hevgirtî bin û li Rojava bi hev re tevbigerîn lê belê PYD'ê rê li ber vê yekê nehiştiye. Oso axaftina xwe wisa bi dawî kir: " PYD weke haraketeke siyasî tu kesî qebûl nake. ENKS'ê weke şirîk qebûl nake. Endamên wê direvîne binçav dike. Divê vê yekê eşkere bike."

## YPG'ê hişyarî da Tirkiyê

Fermandariya Giştî ya YPG'ê diyar kir ku dewleta Tirkiyê ji 24'ê tîrmehê û ve tevgerên provaktîv beranberî Rojavayê Kurdistanê dike û got ku Tirkiyê ji encamên tevgerê xwe berpirsyare. Fermandariyê her wiha hevkarên xwe yên hevpeymana navnetewî ya li dijî DAIŞ'ê jî xwest ku helwesta xwe ya beranberî tevgerên Tirkiyê zelal bike. Têkildarî tevgerên balafirên Tirkiyê yên li ser Rojava û êrîşên artêşa Tirkiyê yên li ser çeperên YPG'ê û Burkan El-Firatê Fermandariya Giştî ya YPG'ê daxuyaniyek nivîskî belav kir. Fermandariyê ji Tirkiyê xwest ku helwesta xwe zela nîşan bide û got ku Tirkiyê ji ber tevgerên xwe yên provektîv berpirsyare. Fermandariyê her wiha ji hevpeymana Navnetewî ya li dijî DAIŞ'ê jî xwest ku derbarê tevgerênTirkiyê yên li ser Rojava helwesta xwe nîşan bide.

# Mesulîyetê kurdanê ke wendiş û nuştişê kirdkî

**Welat Amedî**

Sey her şarî Kurdî zî wayîrê yew folklorî yê. Folklorê kurdan zaf dewlemend o. Dewlemendîya xo Mezopatamyayî ra, tarîx ra. Coğrafya xo ya qedîmî ra yeno. Kurdê ke dewan de pîl biy, bi çimanê xo şahîdê zengînîya folklorê xo bîy . Mîsyonerê ke kurdan ser o xebetiyê, xatirayanê xo de zaf rey behsa dewlemendîya folklorê kurdan kerde.

Folklorêk çiqas dewlemend bibo zî wexto ke nêame nuştiş; qeydkerdiş vindî beno û şino. Çîyo ke bêro nuştîş vîndîbîyayîş ra feletîno. Panzehîrê vindîbîyayîşî, nuştiş o; qêydkerdiş o.

Eke ma xafiza yan zî vîrê kurdan xo mîyan de muqayese bikîn ma vînenê ke sewîya xafizaya komelkî û foklorîkî extîyaran ra ver bi qijan/şenikan yena war. Kurdê ke mîyanê 65 – 75 serre de yê, vîrê inanê kurdkî tewr gird o. Ê ke merdî, zaf çîyê ma zî înan dir bimirê. Naye ra dês serre ma kurdan esta. Se kenî çi kenî ganî ma nê des serran de bikerê. Çi beno wa bibo ganî nê des serran de bêro nuştiş. Eke nêro nuştiş kurdî çar hezar serranê xo zî vîndî kenî. Nayê ra kurdî ke ewro bi kurdkî wendiş û nuştiş zanê çi beno wa bibo ganî gamî qeyd bikê û binusê.

Xebatê folklorîkê ke kurdan ser o amey viraştiş zaf tay ê. Folklor yew okyanus o, nê xebatî hema yew çeng awê nîyî. Mehsulê yew gile nêkenê. Ma rewşa kurdan ewqas xirab nîya ? Xora heta ewro folklorê kurdan ser o xebatê arêkedişî bi kesanê şexsî bîy. Alî Beytaş, Dogan Karasu û Seyîdxan Kurij zî nê kesan ra yê. Înan derheqê xebatanê xo, folklorê kurdan û seba ke folklorê ma vîndî nêbo kurdî eşkenê se bikerî ser o Basnews dir qisey kerdî. Ali Beytaş : Heskerdiş dermanê her çî yo.

**Derheqê xebata xo de şima şîyenî malûmat bide?**

Heskerdîş dermanê her çî yo. Demo ke to çîyê ra hes kerd, ti eşkena derheqê ê çî de zaf çîyan bikerê. Çimke heskerdîş to gêno û ver bi warê ê çî beno. Ziwanê ma de yew vatêyê verênan de nîya vajîyeno: "Şivaneyî pişqule ra zaf hes kerdo. Hewt serrî bêguman tunikê/cêbe potê xo de çarna" No vate, qîymetê zafheskerdîşî bêemsal ano ra ziwan. Ez kî ziwanê xo ra zaf hes keno. Çoka ke babeta ziwanî de her çî balê mi anceno. Na semed ra, ez wazeno ke şew û roj qet mevindî û sebeta ziwanê xo mi dest ra çi ame bikerî. Ez verin de şarnasîya/folklorê ma sero xebetî yo. Mi vateyê verênan, estanîkî/şanikî, îdyomî, zewt û zinêtî, meseleyî/fikrayî, çibenokî, nameyî, kilamî, zîyar û dîyarî ûsn. kerdî top. Ez hona kî sero xebetîno û keno top. Xebatê mi hona xeylî wext dewam kena. Ez wazeno nînan pêro bi nameyê şarnasîya ma yew kitab amade bikerî. La mi nê xebatanê xo mîyan ra estanîkî bi nameyê " Şaîsmayîl" kerdî kitab. Yew xebatê mi kî hîkayeyan ser o bî. Bi nameyê "Solê sûrî" çap bî. Zobîna kî xebatê mi estê. Ferheng, şîîrî/helbestî, xebatê gramerê kirmanckî, ez ziwanê xo museno (temrîn), şarnasîya ma û sey nînan xebatê mi dewam kenê.

**To nê xebatan rê key dest pêkerd ?**

Destpêkê xebatanê mi da-des seran ra zêde yo. Ez mamosteyê mektebê verên o. Labelê mi 2006 de mamostetîye caverdê û xebatê mi zî a serre ra nat zêde bîy.

**Fikrê arêkerdoxîye hişê to de sênî virazîya? To kamcîn mintiqayan ra arêkerdişî kerdî. Xebatê to yê weşanîyayî estê? Eke estê nameyê înan çi yo?**

Xebato en esasî xebata zereyê warî yo. Hişê mi de kî no bî. Ez çend dewan mîyan de cêro. Verinde mi qet vengê xo nêkerd û ez bîyo goşdarê dewijan. Mi va hela çi û se qisey kenê. Qisêykerdena înan mîyan ra mi çekuyê en kanî tesbît kerdî. Dewijî xo mîyan de mucilîyêne. Demo ke xo mîyan de mucilîye kerde giran vatêyê verênan, îdyomî, zawt û zinêtî zef xebitnêne. Demo ke vatê mucilîye/xoşebere/sohbete mîyan de ame ro ziwan vateyo en orîjînal o yo. Xora ez kî vateyanê orîjînalan ro cêrêne. Mi hedî hedî deftera xo de not kerdêne. Mi nê xebatanê xo mintiqaya Gimgimî de kerdî. Xebatanê mi ra di kitabî çap bîye/weşanîyayê. "Şaîsmayîl: Estanîkanê Gimgimî ra", kitabe hîkayean "Solê sûrî" nameyê kitabanê min ê.

**Bi xo folklor yew okyanus o. Na mana de to tena estanikî/vistonîkî arê dayî?**

To zaf weş va. Xora şarnasîye/folklor yew okyanus o. Şo şo nêqedîno. Babetê folklorî zaf ê. Folklor orîjînalîya şarî ya. Nê. Mi cor kî behs kerdbî, xebatê mi teyna estanîkan ser o nîyê. Ez pêroyê babetanê folklorî ser o xebetîno.

**Xebatanê wareyan de zaf çi kî ware/saha de yene ferqkerdiş. Çîyo ke to warê xebate de ferq kerdbî estbî?**

Merdim zaf çîyan xebatê warî de museno. Mi çekuyê en orîjînalî dewijan ra heşnayî. Dewij, bacarokij ya kî bacarij ferq nêkeno pêrokî şaro, la dewij başqe yo. Çimke ziwan demo ke kewt bacar beno asîmîle. Orîjînalîya xo keno vîndî. Çoka, war çiqas bacar ra dûrî bo, cuyê xo kî hondê heqîqî yo.

**To gorê seba ke folklorê ma bi sistematik-projê bêro arêkerdiş ma eşkenî se bikerî ?**

Kultur ke vîndî bo, şar kî beno vîndî. Dermanê mergê merdimî dermanê doxtoran o. Dermanê mergê kulturî nuştîş o. La nuştîş ke nêamey wendene beno bêqîymet. Na mana de şarê ma zaf-zaf qels o. Wendoxê ma çin ê. Gerê ma zêde biwanîme, binuşnîme. Dermanê şarnasîya ma, edebîyatê ma û ameyîşê ziwanê ma wendîş û musayîş der o. Derheqê folklorî de xebato en muhîm û muteber xebatê warî/saha yo. Ê tabî xeylî zehmet o.

Gerê karê folklorî şar mîyan de bivirazîyê. Karo folklorîk, demo ke şarî mîyan de virazîya bêxeled o. Merdim eşkîno nê xebatanê nîyanênan sero kom bi kom bifikirîyo û projeyan amade bikero.

**Ti şênî derheqê xebata xo de melûmat bidî ? To key dest pêkerd? Fikrê arêkerdişî hişê to de sênî viraziya?**

Ma 2005'i di dest xebatê Dengbêjanî Çewlîgî kerde. Ma çend babêtan ser o qerar girewtbî Miyanî nê babêtan di dengbêj zî bibî. Ma nê babetî kerdî rêzî. Ma ewnîyê ti ra kamcî babet mudaxeleyek lez wazeno, ma aye ra dest pê kerd.. Ma pîyorê dengbêjanî Çewlîg ser o xebate kerde. Ma 54 hebî dengbêjî eştî miyanî na xebatê xo. Ê dengbêjî ke weşîbî ma ê dengbêj tesbît kerdî û ma şî ciwiyayişî înan ser o malumat da arîye. Û ma ê dengbêjani ra qeydî kilaman girewt. Ma yew arşîvo 14 seatin viraşte. Ê dengbêjî ke merdî, ma qeydê vengê ê dengbêjan da arîye. Miyanî nê arşîvi ra ma kilamî weçînêy. Her dengbêjî ra ma yew kilam girewt. Na kilam ma nuşte û redekte kerde û bi tirki û bi kurdî kîtabî di nuşt. Bi no qeyde yew kitabo 238 ripelin vecîya werte.

Xebata bîn zi ma Rencber Eziz ser o kerde. Rencber Eziz yew hunermendêko gird o. Mi bîyografîyê ey da arîye. Keyê ey, embazî ey, embazî ey ê mektebî, embazê ey ê xefizîye mi tesbît kerdî. Ez şîya mi piyorê înan di qisêy kerd. Tayê embazî ey Elmanya di bîy. Ez şîya Elmanya û mi înan di zî qisêy kerd. Piyorê deyirî ey mi arîyedaye. Ez seri di xebitiyawa. Redeaksîyonê nê dêyiran Mehnet Selim Uzun mi rî kerde. Rencber Eziz kurmancî, kirdkî û tirkî deyîr vatî. Mi piyorê deyirî ey girewtî no kitabî.

**To kamcîn mintiqayan ra arêkerdişî kerdî. Xebatê to yê weşanîyayî estê? Eke estê nameyê înan çi yo?**

Ma Çewlîg ra gêrayî, tayê dengbêjî ma zî tewerî Çewlîgî di bîy. Ma hetanî İstanbul, Kocaelî usn. şî. Ez eşkena vaje ke ma xebatake zaf weşi kerde. Dengbêjî Çewligî o wext ra apêy aver şîyî. Dengbêjkî mîyanî gelî ma di yew can girewte, ruxi girewte.

Rencber Eziz zi gelêk baş bi. Ma pîyorê kilamî ey girewtî kitabi. No kitabi zî 228 ripelî yo.

Dengbêjî Çewligî (Bingöl Dengbejleri) weşanxaneyê Perî ra ame çapkerdiş. Kitabî Rencber Eziz weşanxaneyê Vateyî ra ame çapkerdiş.

**Bi xo folklor yew okyanus o. Na mana de to tena estanikî/vistonîkî arê dayî?**

Raşt o, xebata ma zî sey yew dilopêk a. Şima zî zanî ke okyanus dilopananî ra yeno meydan. Ma va wa no wer di di solê ma zî bibo. Folklorê kurdan zî zaf hera yo bakîr o. Kam çi babet ser o xebat bikero xebatê ey xebata newe ya.

Mi tayê estanikî Çewlîg arêdaye. Labelê ez hema ha vernîyê na xebati di. Na xebatê mi kêy qedîyena, qedîyena yan zî nêqedîyena belî nîyo.

Seyîdxan Kurij: Apî mi heme destanî kurdan yê meşhur sey "Mem û Zîn", "Sîyamed û Xece", "Zembîlfiroş" bi kirdkî vatêni. La o merd, ez nêeşkaya wext de ey de qisêbikerî û vateyî ey qeyd bikerî.

**Ti şênî derheqê xebatanê xo de melûmat bidî ?**

Mi 1991 ra nat mi bi tirkî, almankî û kurdî (kurmanckî û kirdkî) roportajî viraştî û nuşteyî cigêrayişî nuştî. Xercî roportaj û nuşteyan ez 1991 ra nat heta nika folklorî kirdkî ra sanikan, meseleyan, fikreyan, fablan, vateyê verênan arêdana û kirdkî hîkayeyan nusena.

Ez 1991 ra nat serewedartişî şarî kurd ê 1925, yanî serewedartişî Şêx Seîd ser o xebat kena. Mi no derheq de cigêrayiş viraşt û roportajî viraştî. Mi na xebatê xo zî sey kîtab da çap kerdiş Bi Vateyî Şahadan Hareketê Şeyh Seîd (bi tirkî), Weşanxaneyî Lîs, Dîyarbekîr, Gulane 2013, çapî didin Nîsan 2015.

Hîkayê mi zi bi nameyî "Grev" sey kîtab hetî Weşanxaneyî Roşna ra 2013 de Dîyarbekîr de ameyî çap kerdiş. Ancî mî kîtabî hîkayeyan ê Ahmet Say açarna kirdkî. Ahmet Say, Güneşin Savrulduğu Yerden – Bingöl Hikayeleri ( Tirki ra tadayişî kirdkî), Weşanxaneyî Evrensel, Istanbul, Gulane 2013

**Fikrê arêkerdişî hişê to de sênî viraziyaya û to key dest pêkerd ?**

Mi verî kirdkî xeberî rojane nuştêni, roportaj viraştênî û nayê programê radyo de neşir kerdênî. Mi semêdê radyoya kayî ma "Kalo Gaxun" nuşt û radyo de wend, cuwa pey no nuşte rojnameyî "Welat"î de weşanîya.

Folklorî kirdkî mi rê xêrîb nêbi. Keyeyî ma de tim sonikî vacîyayêni. Sey zafê qicanî Kurdîstanî mi zî qijkekê xo de şewanî zimistanî ê dergan de pîlanî xo ra zaf sanikî goştarî kerdî. Apî mi, baykî mi, dadîyê mi û emkênayê mi hol sanikî vatêni. Apî mi, mintiqayê ma de yew çîrokbêjo namedar bi. Yanî mi her wext waştenî ke folklorî ma sero xebat bikerî, na hazîneyê ma vînbîyayiş ra bixelisnî. Çunke nê seranî peyênan hinî cematanî ma de sanikî nênî vatiş.

**To xebata wareyî (saha çalişması) ya xo kamcîn mintiqayan de kerdî.**

Mi mintiqayê Çewlîg sero xebat kerd. Hema hema materyalo folklorîk ke mi arêkerdo, mintiqayê Çewlîg ra yo. La mi cîya- cîya cayan de însanan de qisê kerd û vateyî înan qeyd kerdî. Mi Almanya de, Xarpêt de, Antep de, Îstanbul û Adana de cîya cîya însanan ra materyalî qeyd kerdî , nuştî û neşr kerdî.

**Xebatê ke şima kerda û weşanîyaya nameyê înan çi bi ?**

Hetanî nika nê xebatê min ê folklorîk weşanîyayî:

Wayê Hot Birayûn: Sanikan û Deyîranê Çewlîgî ra, Weşanên Arya, Îstanbul, Nîsane 2002, 128 r. No kîtab de 11 sanikî, 23 deyîrî (lawikî) û 14 fiqreyî estî.

Filît û Gulîzar, Weqfa Kurdî ya Kulturî Stockholmê, Stockholm, 2004, 28 ripel. No kîtab de yew sanik esta, la sanik bi resiman ameya neqişnayiş.

Arwûnçî û Lûy, Enstîtuya Kelepûrê Kurdî Şaxê Duhokî, Duhok 2010, 223 rîpelî

Çapî Diyînî: Arwûn û Lûy, Weşanên Nûbihar, Istanbul, 2014, 256 ripel. No kîtab de 38 sonikî û 29 fiqreyî ca genî.

Deyiri Çewligi, Weşanên Nas, Istanbul, Nisan 2014, 207 ripelî. No kîtab de 111 deyirî estî.

**Bi xo folklor yew okyanus o. To mîyanê folklorî teyna estanîk/vistonîk arêdayî ?**

Mi Deyirî, fikreyî, fablî, îdyomî û vateyê verênan zî arêdayî. La esas mi sanikan, deyiran, fablan û fikreyan sero zaf xebat kerd.Mi waşt ke ez destanan ser o zî xebat bikerî, la çi heyf ke mi çimeyî xo yê destanan kerd vîn. Apî mi heme destanî kurdan yê meşhur sey "Mem û Zîn", "Sîyamed û Xece", "Zembîlfiroş" bi kirdkî vatêni. La o merd, ez nêşkaya wext de ey de qisêbikerî û vateyî ey qeyd bikerî.

**Merdim zaf çiy kî warê/sahaya xebatan de ferq keno. Çîyo ke to warê xebate de ferq kerdî estbîy?**

Ez 25 serrîyo kirdkî wanena û no ware de kar kena. Mi hema hema sanikî heme mintiqayan wendî. Sanikî hetî tema ra hema hema sey cîye yî, beynatey înan de zaf ferq çînî. Ge –ge beynateyî sanikan de tayî ferqî qijkekî estî, yanî varyantî cîya cîya yê sanikan estî. La hetî ziwana beynatey mintiqayan de taye ferqî estî. No rid ra mi her di kîtabanî xo yê peyênan de bi nameyî „Tayê Xususîyetî Fekî Çolîgî" yew nuşte neşir kerd. Çunke mi waşt ke wendoxî xususîyetanî fekî Çolîg bizanî û no qeyde kîtabî hîna rehet biwanî.

**Seba ke folklorê ma bi sistematîk-projê bêro arêkerdiş ma eşkenî se bikerî ?**

Her nuştoxî kirdkî ganî xo ver o xebat bikero. Hema hema heme miletan verî sanikî xo û destanî xo nuştî û edebîyatî xo yo modern înan sero awan kerdo.

Nika Tirkîye û Bakûri Kurdîstan de çend zaningehan de qisimî ziwanî kurdî estî. Nê zaningehan de ganî projeyî arêkerdişî folklor virazîyî, wendoxî dewan bigerî û materyal top bikerî. No materyal hol bîyero arşîv kerdiş û nuştiş. Wendekarî nê zaningehan eşkenî folklorî ser o, têverardişî folklorî mintiqayan ser o tezan binusî. Ganî TV kurdan de bernameyî vatişi sanikan bibo, sanikanî ma ra fîlmanî qarton, anîmsayon virazîyê ûsn.

**Destê ma rê çi yeno ? Fikrê to çi yê ?**

Çi heyf ke televîzyonî Başûrî Kurdîstan ca nêdanî kirdkî. Ganî nê Tv zî bernameyanî kirdkî virazî û bi giştî folklorî ma ra fîlmanî qican virazî.



















### Sait Çürükkaya:

# Pêşmerge êdî arteşek modern e

**Rawîn Stêrk**

Perwerdekarê Pêşmerge'yan ê ku ji destpêka şerê DAIŞ'ê virve ye li aliyekî li eniyan di nava şer de ye û li aliyê din jî li ser stratejiya şer û perwerdehiya Pêşmerge'yan wek efserekî kar dike Sait Çürükkaya li ser rewşa eniyan, dahatuya Pêşmerge û herêmê agahiyên balkêş dan rojnameya me. Çürükküyü anî ziman ku her çiqas di destpêka şer de Pêşmerge ketibe nava hin tevliheviyan jî, bi beşdariya Pêşmerge'yên kevn û piştgiriya çekî ya navdewletî, di demeke kin de li hemû eniyan qontrola şer ketiye destê wan û DAIŞ'ê tenê li Herêma Kurdistanê nikariye ku pêş de biçe. Çürükküya ku yekdestkirina Pêşmerge weke tiştekî ferz bi nav kir û agahiyên berfireh yên teknîkî li eniyan bi me re parvekir, da zanîn ku hem bi perwerde û hem jî çekên heyî êdî Pêşmerge li Rojhilata Navîn êdî arteşa herî bihêz û modern e. Çürükkaya amaje bi wê yekê jî kir ku êdî ti derfeta ku DAIŞ li Başûr bibe xetereyeke mezin nemaye û li ber serxwebûnê êdî mercên şer ne xwedî giraniyeke ku bibe asteng e.

**Niha li Başûrê Kurdistanê rewşa eniyan çaqa ye? Hun dikarin xwînerên me û raya giştî di derheqê rewşa eniyan de agahdar bikin?**

Li Başûrê Kurdistanê di hemû eniyan de însiyatîf di destê Pêşmerge de ye. Di hemû eniyan de cerdeyên DAIŞ'ê yên ku dixwazin êrîşan pêk bînin tarûmar dibin û paşve vedikişin. Pêşmerge niha ji sedî 95 axa Kurdistanê kontrol dike, lê belê ji bo xeteriya DAIŞ'ê bi tevahî ji holê rabe, divê artêşa Iraqê xwe bi rêk û pêk bike. Di vê bareyê de Iraq ji Sûriye'yê cûdatir e. DYA û hêzên navneteweyî Iraqê wek hevkar dibînin û alîkariya çekan didine hikûmeta navendî, lê belê li Sûriye'yê hewl didin ku hikûmeta Sûriye'yê têk bibin. Ji ber vê yekê ev hêz li Iraqê hewl didin ku artêşa Iraqê perwerde bikin û bi çek û rext bikin û li Sûriye7yê jî YPG wek hêzeke bejayiyê dibînin û bi YPG'ê re hevkariyeke çalak dimeşînin. Di encama van hewlan de li Sûriye'yê li dij DAIŞ'ê êrîşên mezin û berfireh pêk tînin lê li Iraqê rewş aramtir e.

**Li Başûr ji bo siberoja nêzîk xeteriya DAIŞ'ê maye?**

DAIŞ tu carî bi tenê ne arîşeya kurdan bû, lê belê li dij vî dijminê dirinde, tenê kurd bi şêweyekî çalak helwestiyan. Ev gelê ku bi sedsalan di axa xwe de hate pelçiqandin, li dij vî dijminê ku dixwaze welatê wan bike dojeha ser rûyê erdê, bi niştimanperweriyeke bêhempa şer dike. Ger ku bergiriyeke baş neyê kirin, wek li Kobanê kir, wê êrîşên dijwar pêk bîne, lê belê di dirêjahiya demê de ne pêkan e ku DAIŞ axa Kurdistanê dagir bike.

**Piştî şer li Kurdistanê rewşa demografîk çawa bû? Guherîneke mezin pêk hat yan na?**

Bi şer re Şengal û hin herêmên Rojava hatin valakirin. Nêzîkî 400 hezar ezdî ji Şengalê reviyan û bi raya min wê ji çaran yek zêdetir ji van ezdiyan venegerin Şengalê. Her wiha ji sêsêyan yek zêdetir gelê Kobanê wê venegerin Kobanê. Bi êrîşên DAIŞ'ê re li Kurdistanê, nêzîkî milyonek kurd ji warên xwe reviyan. Cihên van koçberan hÎn jî vala ne û bi raya min, piştî şer, ger ku ew hêzên ku li van deran serdest in polîtîkayên baş pêk neyînin wê pir kêm şêniyên van herêman vegerin cihên xwe. Hemû partiyên siyasî yên herêmê, di cihê ku ji bo vegera koçberan siyaset bimeşînin, dixwazin ji bo armancên xwe siyaset bimeşînin. Ev yek jî dibe sebeb ku piraniya koçberan bikevin ser rêya Ewropayê.

**Di destpêka şer de hêzên Pêşmerge wek hêzeke nîzamî nedixuya. Gelo niha di warê nîzamî û profesyonelî de rewşa hêzên Pêşmerge çawa ye?**

Di destpêkê de Pêşmerge gellek zehmetiyan kêşa û niha jî di hin mijaran de zehmetiyan dikêşîne, ev rast e. Ev mijar bi serê xwe mijarek pir grîng û berfireh e û divê bi hûrgulî bê nirxandin.

Pêşmerge ji sala 1991'an bi şûn ve şerekî berbiçav nekir û Pêşmerge'yên niha wê demê zarok bûn. Pêşmerge'yên pispor û xwedî tecrûbe teqawid bûbûn. Pêşmerge, di çarçoveya destûra Iraqê de ji bo asayîşa navxweyî hatibû bi rêkxistin û ne xwedî stratejiyekê bû ku li dij dijminekî derî Iraqê şer bike. Ji ber vê yekê di destpêkê de pir zehmetiyan kêşa, lê belê bi saya vegerîna Pêşmerge'yên kevn ên niştimanperwer û kesên xwebexş, Pêşmerge xwe bi rêk û pêk kir û bi saya alîkariyên çek û perwerdekarî yên gellek dewletan jî, hêzên Pêşmerge di warê çawanî de xwe bi şêweyeke balkêş guherand, bixwe ve hat û niha li dij dijmin şerekî serkeftî dimeşîne.

Bi saya tecrûbeya ku ji mercên şer wergirt û hatina çekên giran û tîndar, hêzên Pêşmerge bû yek ji artêşên herî modêrn û hêzdar ên herêmê. Hîna jî hin kêmasiyên fermandarî yên kevn hene, lê belê ev kêmasî jî bêne çareserkirin wê guherîna hêzên Pêşmerge temam bibe.

**Tê zanîn ku Haşdî Şabî dixwest di hin herêmên Başûr de xwe bi cih bike. Li ser vê mijarê pêşbînî û bergiriyên hêzên Pêşmerge û Hikûmeta Herêmê çi nin?**

Bi raya min divê ne pêkan be ku ji bilî hêzên Kurdistanî tu hêzeke din dikaribe di Herêma Kurdistanê de bi cih bibe. Ev mijareke pir tevlîhev e. A rast ev e; Divê li Kurdistanê, tu hêzeke ku ne girêdayî Pêşmerge be ne rewa be û divê ne Pêşmerge'yên partiyan Pêşmerge'yên Herêma Kurdistanê hebin. Lê belê li dervayî vê danasê, li Başûr hêzên Haşdî Şabû, li bakur ji hêzên PKK û PDK-Î'yê hene û ev hêz ne grêdayî Wezareta Pêşmerge ne. Xala herî grîng ev e; Ji ber ku Haşdî Şabî ne hêzeke Kurdistanî ye û armanca wê mezhebî ye, dive ji Kurdistanê bê deravêtin. Di nav yên din de jî ya ku rewşa wê cihê arîşeyê ye PKK ye. PKK, li Başûrê Kurdistanê li qadeke ku navê 'Qadên Parastina Medyayê' lê kirî ye, ne rewa, lê wek defakto bi cih bûye û ve qadê kontrol dike.



Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) jî wek faktorekî vê rewşê erê kirî ye. Ev rewş jî dibe sebeb ku wek van rojan pêk tê dewleta tirk vê herêmê bombebaran bike û RHK vê rewşê erê bike. Pirsgirêk wiha ye; PKK, stendina bacê jî tê de hemû kontrola vê qadê xistiye destê xwe. Dema ku ev qad ji alî Tirkiye yan Îranê ve tê bombebarankirin jî PKK, RHK'ê bi bêdengmayînê rexne dike. Li ser nexşeyê ev qad wek qada RHK'ê ye lê belê wek defakto di destê PKK'ê de ye. Haşdî Şabî jî dixwaze li Başûr, ji xwe re qadeke wek vê qadê bi dest bixe, lê belê divê destûr neyê dayîn.

**Wek em dizanin hêzên Pêşmerge grêdayî partiyan in. Ev rewş di warê potansiyela şer û koordînasyonê de astengiyên çawa derdixe pêşberî Pêşmerge?**

Wek leşkerî dema baş bê koordînekirin, hêzên cuda dikarin bi hevkarî şer bikin, lê belê dema di vê koordînasyonê de pirsgirêk derkebin ev rewş dikare ziyanên mezin bide van hêzan. Ger armanc ew be ku Pêşmerge bibe artêşa neteweyî, divê grêdayî hikûmetê be. Bi vî awayî wê partiyên siyasî jî bibin xwedî hikûmetê û Pêşmerge jî. Yên ku serxwebûna Kurdistanê naramin û ne xwedî feraseta dewletbûnê ne ji yekdestbûna Pêşmerge re asteng in. Wek fermî Pêşmerge di bin banê Wezareta Pêşmerge de yekdestbûyîne, lê di pratîkê de hin gavên ku divê bêne avêtin hene. Ji bo stratejiyeke bergiriyê ya leşkerî, pêwîstiya yekdestkirina hêzên Pêşmerge heye. Bi vî awayî wê xeteriya birakujî ku êşa herî mezin a kurdan e jî ji holê rabe. Di pratîkê de jî ertêşeke ku ji nîrê partiyên siyasî hatiye azadkirin wê di nav civaka kurd de niştimanperweriyê geştir bike û wê hêza şer a Pêşmerge jî mezintir bike.

**Di derbarê yekdestkirina hêzên Pêşmerge de xebat têne meşandin. Ev xebat di çi astê de ne û ji bo serxwebûnê grîngiya yekdestkirina hêzên Pêşmerge çi ye?**

Xebatên yekdestkirina hêzên Pêşmerge beriya şerê DAIŞ'ê destpêkiribûn. Ji ber şer û qeyrana ku di navbera Hewlêr û Bexdayê de rû da ev xebat hêdî meşiyan. Lê belê şer hemû aliyan têgihand ku yekdestkirina hêzên Pêşmerge ferz e. Ez dikarim bi zelalî vê yekê bêjim ku, kî li dij yekdestkirina hêzên Pêşmerge derkeve, ew ne Kurdistanî ye û li dijî serxwebûna Kurdistanê ye. Ji bo artêşeke yekdest, divê di bin banê Wezareta Pêşmerge de Akademiya Şer bê damezirandin û di vê akademiyê de fermandarên ku wê hîmê artêşa neteweyî biçikînin bêne perwerdekirin. Dikare bi vê xebatê ev kar bê destpêkirin.

**Yekitiya neteweyî ku di eniyên şer de pek hat bandoreke çawa li ser zemîna siyasî dike û ji bo yekîtiyê ku ji bo siberojê ferz e çiqas rê divê?**

Ez ne di wê baweriyê de me ku yekîtiya li eniyan zextan li ser zemîna siyasî bike. Ev yekîtiya eniyan, yekîtiyeke ji bêçarî ye. Mixabin hêzên çekdar ên Kurdistanî ji helwestên neteweyî bêhtir xwedî helwestên partîperest in û xwedî ferasetên rikber in. Ji bo pêkanîna yekîtiyê pêwîstî bi stratejiyên polîtîk ên tevlîhev nîne. Kurd netewekek e û wek hemû neteweyên din xwedî mafê damezirandina dewleteke ne û divê artêş jî tekane hêza herî bi bandor a ku vê armancê pêk bîne be. Berovajiyê vê, hêzeke çekdar a ku di bin nîrê partiyek siyasî de ye nabe hêzeke neteweyî.

Ger ku bergiriyeke baş neyê kirin, wek li Kobanê kir, wê êrîşên dijwar pêk bîne, lê belê di dirêjahiya demê de ne pêkan e ku DAIŞ axa Kurdistanê dagir bike.

**Amadekariyên operasyona Mûsilê ku tê payîn wê destpê bike di çi astê de ne? Bêyî artêşa Iraqê egerî heye ku Pêşmerge beşdarî vê operasyonê bibe?**

Amadekariyên operasyona Mûsilê dom dikin. Di vê mijarê de artêşa Iraqê ne amade ye û wisa xuya dike ku wê artêşa Iraqê tu carî amade nebe jî. Pêşmerge, ji bo operasyoneke ku wê artêşa Iraqê jî beşdarî lê bike amade ye, lê belê ji bo operasyoneke ku bi serê xwe pêk bîne ne amade ye. Vîna siyasî ya Kurdistanê li dij e ku Pêşmerge bi serê xwe operasyona rizgarkirina Mûsilê pêk bîne, lewre rizgarkirina Mûsilê ya piştî şehîdbûna bi hezaran Pêşmerge û redestkirina wê ya ji Bexdayê re nayê qebûlkirin. Lê belê wek dîrokî beşek mezin ya Mûsilê axa Kurdistanê ye û divê vîna siyasî ya kurd û hêzên çekdar, xwedî plansaziyeke leşkerî ya bi serê xwe rizgarkirina Mûsilê bin.

**Ji dest DAIŞ'ê derxistin an jî dernexistina Mûsilê, ji alî serxwebûnê ve xwedî roleke çawa ye?**

Di warê serxwebûnê de gringiyeke mezin a rizgarkirina Mûsilê tune ye. Ji bo serxwebûnê tiştê herî grîng piştgirîdayîna hemû hêzên kurd a ji bo Mesûd Barzanî ye. Ev piştgirî xala herî stratejîk a serxwebûnê ye. Hebûna DAIŞ'ê ya li Mûsilê tenê ji bo ewlehiya referandûma serxwebûnê xwedî grîngiyekê ye. Ji bilî vê yekê grîngiyeke Mûsilê tune ye. Bi raya min ajandaya serxwebûna Kurdistanê û operasyona rizgarkirina Mûsilê Ben bağımsızlık ajanu mijaên ji hev cûda ne.



**Hêzên PKK'ê li kîjan herêman heNe û li van herêman rewş û têkilî çawa nin?**

Hêzên PKK'ê niha bêtir li Kerkûk û Şengalê hene. Ji ber ku Gerîlla demeke dirêj e di nav şer de bû û şerê partîzanî meşandibû, di şerê li dij DAIŞ'ê de, li gor Pêşmerge Gerîlla bi avantajtir dikir. Lê belê propagandaya çapemeniya PKK'ê wêneyekî wisa belav kir ku ne ji PKK'ê bûya wê hemû Başûr ji alî DAIŞ'ê ve bihata dagirkirin. Ev propaganda zêde hate kirin. Di şerê li dij DAIŞ'ê de piştgiriya PKK'ê ya li Pêşmerge, ji bo yekîtiya neteweyî û moral pir grîng bû, lê ji bo serkeftineke leşkerî ya rasteqîn pir grîng nebû.

**Demeke berê ji ber 3 Gerîllayên PKK'ê ketin kemînê û jiyana xwe ji dest dan û fermandarê Pêşmerge yê herêmê wek berpirsê vê bûyerê hate nîşandan. Ev helwesta PKK'ê rast bû? Di rastiyê de çi bû?**

Wek min got; Dema ku koordînasyoneke baş bê kirin, hêzên cûda jî dikarin şerekî baş ê hevpar bimeşînin. Lê belê ev koordînasyon qels be pirsgirêkên bi vî rengî rû didin. Beguman helwesta PKK'ê ya ku Pêşmerge berpirsyar dibîne ne rast e. Ger ku ew şev di cihê wan Gerîllayan de Pêşmerge di wê rêyê de biçûna wê Pêşmerge biketina kemînê. Her çiqas Pêşmerge li gundekî nêzîkî cihê bûyerê be û zanibe wê Gerîlla di wê rêyê de derbas bibe jî, ev nayê wê wateyê ku rola Pêşmerge heye. Li Kobanê, cerdevanên DAIŞ'ê di gellek baregehan de derbas dibin û li nav bajar komkujiyan pêk tînin. Dibe ku em bêjin hemû YPG'yiyên li van baregehan bi DAIŞ'ê re hevkariyê dikin? Di vê bûyerê de qelsiya koordînasyonê heye û ev yek bandora neyênî ya siyaseta perçebûyî ya li ser tevgera leşkerî şanî me dide.

**Di hin eniyan de fermandariya hin siyasî û karmendan bandoreke çawa li ser Pêşmerge û parastina eniyan dike?**

Wek leşkerî divê general fermandariya eniyên şer bikin. Ger ku şerê gel bê meşandin, divê her kesên ji civakê jî beşdarî şer bibin. Ger ku DAIŞ bixwaze hemû Kurdistanê dagir bike, divê berî her kesî dewlemend biçin eniyên şer û Kurdistanê biparêzin. Li Kurdistanê pereyê herî pir di destê siyasî û karmendan de ye. Ya wê ev kes hewl bidin ku artêşeke modêrn bê damezirandin an jî ew ê biçin li eniyan şer bikin. Ya herî xerab wek ku hinek dikin, wê ji welat birevin û biçin Ewropayê. Ji ber ku ev şerekî neteweyî ye û aliyên ku şerê neteweyî dimeşînin bûrjûvazî ne, divê li Kurdistanê jî dewlemend biçine eniyan û şer bikin. Lê li Kurdistanê kesên ku bi gendelî bûne sermayedar hewl dane ku birevin derveyê Kurdistanê. Ji bo siyasiyan jî encama herî grîng a ku divê ji vê rewşê têbigihîjin ew e ku artêşeke modêrn a neteweyî ava bikin da ku ew bixwe neçin di eniyan de şer nekin.

# İSLAMABAD

Welat Baz

Wargeha rengîn, bajarê li quntarê çiyayên xemilandî de veşartî İslamabad e. İslamabad abadê Anahîta, Mîtra, Zerdeşt û Siltan Sohaq e, evder wargeha İslamê, bajarê kelamê qedîm e.



**Rêvebirî**

İslamabad yek ji bajarên eyaleta Kermanşa ye. Şêniya eyaleta Kermanşa 2 milyon û nîv û ya İslamabadê jî ji 3 sed hezarî zêdetir e. Eyaleta Kermanşa li Rojhilatê Kurdistanê ostana herî mezin û İslamabad jî li eyaletê piştî peytextê bajarê herî mezin e. Ji bilî İslamabadê li eyaletê, bajarên wek Kermanşa, Gilanê Xerb, Hersîn, Ciwanrûd, Kengavar, Pava, Qasrî Şîrîn, Sahne, Şarê Polê Zahab û Sonqor hene. Cîranên İslamabadê ji bakûr ve Kermanşa, ji başûr ve İlam, ji rojava ve Kerend û Gîlanê Xerbin.

**Erdnîgar**

Derdora İslamabadê bi rêzexelekên Zagrosan ve hatiye pêçan. Çiyayên heremê ji 3 hezar metreyî bilindtirin. İslamabad di nav merîdyenên 34 yê bakûr û di paralelên 47 yê Rojhilat de cîh digre. Xaka heremê bi xêrûberê û gelek dexl û zad û fêkî li heremê tên gihandin. Bi taybetî fêkiyên İslamabadê bi tama xwe navdarin.



**Şênî**

İslamabad, herçend bi navê İslamê tê lêvdan jî, li vî bajarê Kurdistanê baweriyên cudareng yên ji mezhebên Sune û Şîe hene.

Li heremê bi taybetî bawermendên Yaresan û Ehlî Heq hene. Ji bilî hin Kurdên Şîa, li bajêr komek farisên ku karmendên dewletê ne, Şîayên 12 İmamî ne. Herçend ev herdû bawerî têkelî İslamê bûbin jî, koka wan digîje baweriyên kevnarê yên kurdan. Yaresanî û Ehlî Heq bi gelek rîtûel û awayên xwe dişibin Ezdatî û Alewitiyê. Li aliyê din çîroka şêxên Ehlî Heq balkêş e. Rûniştvanên İslamabadê bi giştî kurd in. Di demên kevn de li heremê çend komên cihû û ermenî paşê ji bajêr veqetiyan e.

**Ziman**

İslamabad di warê etnîkî de cîhekî rengîn e. Li eyaletê çar zaravayên Kurdî û gelek devokên van zaravayan tê axaftin. Zaravayên kelhorî, lorî, goranî û soranî li bajêr têkelê hevûdû bûye. Li gund û qezayên bajêr devokên lekî, bextîyarî û hawramî jî tên axaftin. Rûniştvanên bajêr zêdetir bi zaravaya lorî diaxifin.

**Nav û dîrok**

İslamabad li Kurdistanê yek ji bajarên ku herî zêde nav guhertiye. Navê bajêr di dema rejima Pehlewî de Şahabad bû. Ev nav piştî rejima İslamî wek İslamabad hat guhertin. Dîroka İslamabadê wek bajarên cîran yên wek Kermanşa û İlamê digîje demen kevn. Li heremê gelek nîşaneyên ji dema Elamî, Med, Pars û şaristaniyên dûmahîkê wan hene. Dîroka bajêr vedigere 3 hezar sal berî zayînê. Li gor belgeyên dîrokî di dema Şaristaniya Medan de İslamabad beşek ji Madên Mezin bûye.

İslamabad ji bo olên berî İslamê û bi taybetî ji bo Bahdîn yanê dînê Zerdeşt û Rojperestî nawendek girîng bûye. Binavkirina çend ji deverên İslamabadê di Awesta de, girîngiya vî bajarî nîşandide. Bajêr û derûdorê ji dema Hexamenî, Selokîd, Part, Sasanî û İslamê heta roja me di warê aborî û siyasî de cîhekî gîrîng bûye. Ji ber vê taybetiyê li bajêr gelek şaristaniyên ku li heremê hukumdarî kirine, li pey xwe rêç û rîşeyan hiştine.

**Tepeyî Çixagavanî**

Tepeyî Çixagavanî yek ji bermayiyên bastanî yê İslamabadê ye. Tepe ji dema beriya Medan maye. Ji destpêke wek paristgeh hatiye bikaranîn. Girê Çixagavanî niha di nav bajêr de maye. Li derdora gir parkeke mezin hatiye avakirin. Li kelêka tepê xirbeyên keleyekî balê dikşîne. Ew kele tê texmînkirin ku di dema Hexamenîşan de hatiye avakirin, lê paşê di şerekî de hatiye wêrankirin.

**Aborî**

Di aboriya bajêr de bazirganî cîhekî sereke digre. Li İslamabadê fabriqayên mezin an jî saziyên endustriyel tûnene. Bazirganiya bajêr jî zêdetir di Pasaja Merkezî de tê kirin. Ev pasaj di bazirganiya İslamabadê de cîhekî girîng digre. Pasaj di nav bajêr de di salên dawîn de hatiye çêkirin. Di vê avahiya nûjen de ji hemû cûrê bazirganî û pîşesaziyê dikkan û esnaf hene. Ji ber ku gel pêdiviyên xwe yên jiyanê ji vê pasajê bidest dixe, nav pasajê û derdorê hertim qelebalix e. Herwiha kolanên derûdora pasajê jî hemû ji firoşgeh û dikkanan pêk tên.

Di sûka pasajê de beşa dikkanên xemilandî û balkêş yên lîbasfiroşa ye. Bi taybetî dikkanên ku kincên jinan difroşin bi rengînî û tekûziya xwe balê dikşînin. Di pasajê de em dikevin vê dikkana ku lîbasên bûkan û yên rojên taybetî difroşin. Esnafê pasajê wek kesekî balkêş behsa Apê Elîxan ji me re dikin û em jî berê xwe didin dikkana wî.





**Araqa bê alkol**

Di kolanên bazara İslamabadê de em rastî pîşe û firoşkarên balkêş tên. Yek ji van dikkanan araqfiroşê bazarê ye. Helbet ev araq bê alkol û ji bo tenduristiyê wek derman e. Araqên ku ji giya û kulîlkên çiyayan tên meyandin piştî ku li serê tê karkirin tê firotan. Li vê dikanê ji bilî araqê giyayên derman jî tên firotin. Xwediyê dikkanê dibêje dermanên wî di serî de made ji gelek organên însan re başin û nexweşên ku naxwazin dermanên kîmyewî bikarbînin, ji bo nerihetiyên xwe serî didin wî.

**Hingivvan**

Yek ji dikkanên balkêş hingivvanê sûkê ye. Di hingivên ku ji xuleşîrka Zagrosan tê bidestxistin de şekir an jî madeyekî biyanî nayê bikaranîn. Ev hingiv salane dû cara payis û biharê de tê bidestxistin. Xwediyê dikkanê peznê hingivê xwe dide û ew wek derman binavdike. Li gor wî berhemên ku ew difroşe hemû xwezayî ye. Ev hingivê biha ji bilî Kurdistanê li bazara İranê jî muşterî dibîne.

**Lihêvdûz**

Jiyana toreyî û karêndestî li İslamabadê, li hember modernîteyê hîn jî berxwe dide. Ev lihêv û doşekên ku êdî ji xwew û jiyana gelek bajaran derketiye, li İslamabadê hîn jî didome û gelek malbat di nav lihêfên ku bi destan tê çêkirin de radizên. Ev adet bi taybetî di nav kesên ku nû dizewicin de didome. Ji ber vê yekê ev motivê bûk û zava jî di dikkana lihêfduz de cîhê sereke digre. Ev lihêfên destî ji ber ku hîn jî di nav lîsteya cihêzên bûkan de cî digre, muşteriyên herî baş yên lihêvdûzan bûkin.

Wek ziravkariyên din, lihevdûzî û doşekçêkerî herçend li hember fabrîkasyonê pûç bûbin jî li sûka İslamabadê kolana lihêvçêkeran hîn jî şên e. Lihêv ji qumaşên taybetî û rengarenk tên çêkirin. Di lihêvê de hiriyê pez tê bikar anîn. Lihêvên havîn û zivistanê ji hevûdû cuda ne. Lihêfdûzên bajêr ji pêşeroja karê xwe digumanê de ne. Ji ber ku derameta karê wî nebaşe ew bi tenê dixebite.

**Hirî**

Li deverên ku karêndestî yên bi qumaş tên kirin, pêşketîne, li wir hirîvanî jî pêşketiye. Hirîvanên bajêr ji bo ferşvan, lihêvdûz, doşekçêker, kulafvan, kilaşeçêker û xiyatan dixebitin û pediviyên wan tedarik dikin. Di atolyaya ku cîranê sûka lihêhdûz û xiyatan e, hoste hiriyên pez û pirç û mûya bizinan di makînê de vedçirîne û ji bo tevndanê amadekirin.

**Ahenger**

Agirê korikê û hesingerî yanî ahengerî ku li Kurdistanê hîn jî yek ji pîşeyên toreyî ye, li İslamabadê jî didome. Hesinê ku di korikê de tê sorkirin û paşê bi şeklên cuda wek alawên cûrbecûr tê birîn û di xizmeta însan de tê bikaranîn. Ji ber ku li heremê teknolojiya nûjen hîn lewaz e, gelê heremê lazmatiyên xwe ji pîşekarên kevnare temîn dikin. Li heremê hîn jî jiyana gundayetî û awayên kevnare zindî mane. Hostayên ahenger jî wek pîşeya xwe li sûka İslamabadê li hember zeman berxwedide û wê bi dilpakî çakûçê destê xwe dewrê nifşekî din dikin. Das, tevr, qazme, balte, gîsin, kêr, menteşe û gelek lazmatiyên din ji alî hesingeran ve bi awayên sedan sal berê tên çêkirin. Muşteriyên ahengeran zêdetir gundî ne.



**Xiyat**

Li Rojhilatê Kurdistanê wek li hemû bajaran li İslamabadê, jî sûka xiyatan yanê ya terziyan heye. İslamabad devereke ku cilûbergên Kurdî hîn jî tên liberkirin. Ji ber vê yekê, xiyatên ku kincên gelêrî yên jin û mêra didrûn di nav pîşekarên bajêr yên naskirî de ne. Ji ber bayixdana kincên klasîk yên Kurdî, li heremê konfeksîyon pêş neketiye û gelek kes debara xwe bi terzitiyê dike. İslamabadî heman girîngiyê di kincên jinan de jî nîşan didin. Lê kincên jinan zêdetir ji bo nav malê an jî şahî û rojên taybetî tên bikaranîn. Rejima İranê ji ber ku li ser jinan girêdana İslamî ferzdike, cil û bergê jinan yên klasîk li kolana zêdetir nayê lixwekirin.

Li İslamabadê rengdûziya lîbasan yek ji karên sûke ye. Kincên kevn an jî yên rengdayî, li dikkana rengdûziyê tên boyaxkirin û careke din tên bikaranîn.

**Şevên bajêr**

Şevên İslamabadê rengînin. Ev lûnaparka rengareng bi taybetî mehên havînê heta derengê şevê mazûvaniya bajariyan dike. Lûnaparka İslamabadê hinek li dervayê bajêr li kêleka Parka Milet hatiye avakirin. Bajarî bi seyareyên xwe diçin lûnaparkê. Di lûnaparkê de ji bo zarokan pêlîstokên xas hatine çêkirin. Coşa zarokên İslamabadê di lûnaparkê de heta wextê dereng didome.

İslamabadî ji bo kêf û seyranê gelek derfetan dibînin. Ev çayfiroşê kolanê û muşteriyên wî jî şahidê vê yekê ne. Nîvê şevê kesên ku bi seyareyên xwe ji vê caddeyê derbasdibin, bê ku peyabin karin, li kêleka vê çayxana seyar hinek bîhna xwe bidin çaya germ vexwun.

Dîmenê şevê û keyfxweşiya İslamabadiyan bi vî fêkîfiroşî temam dibe. Ev dikkan jî heta ber destê sibe ji bo ehlêkêfên bajêr hemû cûre fêkiyan difroşe. Rojên van şevan jî li restorantên wek Sefirxaneyî Xurşîsabûraz derbas dibin. Sefîrxaneya Xurşîsabûraz ku li nav bajêr li Meydana İlam hatiye vekirin, yek ji deverên naskiriyê yê İslamabadê ye. Hindirê restorantê wek galeriyeke hunerî hatiye xemilandin.Ji tabloyên ciwan heta motivên dîrokî û cîhên otantîk yên rûniştinê hemû şekl û şemala xwaringehê îştaha muşteriyan radike.

**Seyrangeh**

Wek hemû bajarên Rojhilatê Kurdistanê, li İlamê jî park û seyrangehên wek newazeyên xwezayê hene. Parka Milet ku seyrangeha sereke ye, ji bo İslamabadiyan cîhê sereke yê bêhndan û navberdana karên jiyanê ye. Delalî û siya darên parkê xem û mandîbûna jiyanê bi mirov dide jibîr kirin. Parka binavûdeng li Bajarê İslamabadê Milet e. Ji ber ku Milet di nav bajêr de ye, rojên Înê bi taybetî mazûvanê bajarîya ye. Li parkê mirov rastî xwendekaran, zarokan, pîrekalan û ji her tebeqeyî mirovan tên.

# Jin beşdarî Pêvajoya Çareseriyê dibin

Evîn Farqîn



Di van rojên ku operasyonên leşkerî û zextên asayîşî zêdetir dibn û dengên şerxaz li hemû Tirkiye'yê berz dibin de hêviyên çareseriyê jî têk diçin. Meclîsa Azadiyê ya Jinan (KÖM) hewl dide ku di nav vê hewara şer de rola jinan a aştîparêz derxe pêş û jin di vî warî de rola xwe bilîzin. Bi vê mebestê lijneyek hate damezirandin û armanca sereke ya vê lijneyê, lêkolînkirin û şopandina bûyerên dawî yên ku bi ser wan ve şer û pêvçûn zêde bûn.

**'Jin, yek ji pêkhateyên pêvajoya çareseriyê ne'**

Meclîsa Azadiyê ya Jinan (KÖM) ku Kongreya Jinên Azad (KJA) jî tê de, jinên ji her derûdorên civakî pêk tê, biryara lidarxistina lijneyeke çareseriyê da. Jinên tê de di vê baweriyêde ne ku bi vî awayî, di qada avakirina aştiyê de wê karibin roleke grîng bilîzin. Armanca vê lijneyê di serî de derxistina rastiya bûyerên ku di van rojên dawîn de pêk tên û ji hêla dewletê ve rastiya wan tê veşartin e. Her wiha dixwazin lijneya xwe bişînin derûdorên wekî Qendîl, İmrali, Hikûmet, saziyên civakî û partiyan.

Di derbarê mijarê de Parlamenta Batmanê ya Berê ya HDP'yî Ayla Akad Ata ji BasNûçe'yê re, qala Lijneya Çareseriyê kir û got ku KÖM, xebatên xwe digel tevgera jinan a Tirkiye'yê didomîne û yek ji pêkhateyên deklerasyona Dolmabahçe'yê ku ji hêla hikûmetê ve hat xirakirin jî pirsgirêka azadiya jinan e û di vê çerçoveyê de jinan daye xuyakirin ku ew jî aliyekî pêvajoyê ne û tevlî dibin. Ata wiha domand: "Piştî ku KÖM'ê ji raya giştî re xwe ragihand, hem fikrên xwe yên di derbarê çareseriyê de diyarkir hem jî car caran ew bixwe diçû û lêkolîn dikirin. Bo nimûne piştî bûyera li Erdexan û Pirsûsê çûn van deran, dibe ku wê biçin Licî jî." Ata got ku yek ji armancên wan jî tevlîbûna pêvajoya çareseriyê ye û ew tevî tevgera jinan a Tirkiye'yê, jinên çepgir, sosyalîst, bawermend, kurd, tirk, ermenî, asûrî, zanyar û hwd. in.

**'Em ê pêvajoya çareseriyê biparêzin'**

Ata nirxandina li ser pêvajoya ku di van demên dawîn de derbeke mezin xwar û a dawî ji hêla serokomar ve dawîlêhatina wê bi eşkere hat bilêvkirin de nirxên xwe bi me re parve kir û wiha axivî: "Raya giştî piştî agirbesta ku ji hêla PKK'ê ve di sala 1993'an de hatibû ragihandin, cara yekem dest bi nîqaşa aştiyê kir û şert û mercên derveyî şer nirxandin. Bi taybetî jî di 3'ê Çileya 2013'an de ku bi çûna lijneya siyasî ya ligel İmralı'yê pêvajoyeke nû destpêkir û hat vê rojê û pê re pêvajoyeke dîalog û bêçalakîtiyê destpê kir. Lê bi êrîşên DAIŞ'ê li dijî Kobanê ev pêvajo derbek xwar û baweriya raya giştî ya Kurdistanê şikest, raya giştî ya Tirkiye'yê jî bi gotara "PKK dev ji çekên xwe berde" tevlî pêvajoyê bû." Ayla Akat, bale kişand ku ew wek KJA'yê pêvajoya çareseriyê weke parastina nirxa xwe ya herî pîroz diparêzin lê jê re gavên pratîk divêt û ew aniha nikarin bibêjin ku di nav van 2 salan de dewletê gavek avêtiye, ji sala 1993'an û vir de nîqaş tên kirin ku şer ji şert û mercên çawa derçû û aştî dê di şert û mercên çawa de pêk were. Ata bibîr xist ku serokomar berî ku biçe Çînê gotibû ku "Em nikarin behsa pêvajoyeke çareseriyê bikin" û ev mikurhatineke şerî ye û wisa domand: "Em heta dawiyê têkoşîna çareseriyê bidin lê em dizanin ku aniha vegerîna hikûmetê ji biryara şerî aniha zor xuyan dike. Daxuyan iyên Selahattin Demirtaş jî sansûreke jidil xwar. Operasyon, binçavkirin, êrîşên faşîst, şewitandina gundan. Em vana baş dizanin. Hikûmet jî encamên van baş dizane lê şer xwest. Aniha em wek gel û rêxistinan li hêviya hikûmetê nîn in ku gavekî biavêje. Jixwe ji pileya herî bilind, daxwaza şerî eşkere kir."

**"Têkoşîna jinan ji aliyê dewletê ve wek gefekê tê dîtin"**

Herwekî din Ata anî ziman ku niha 'qirkirina' 2009'an ku li ser jinan û rêxistinên wan hatibû kirin dubare dibe û got dewlet, têkoşîna azadiyê ya jinan weke gefekî mezin bo xwe dibîne û di vê çerçoveyê de pênaseyeke resen a jinan û têkoşîna azadiya wan heye û dewletê li hemberî vê konsepteke cidî a şer daye meşandın û ev helwest bo fersenda çareseriyê tê wateya ku fersendeke mezin ji dest diçe. Ata her wiha bal kişand ku di nav dewletê de mêjiyeke nêreza biryara şer dide û gotina jinan ji hêla dewletê ve tê piştguhkirin lewre di nav lijneya wezîran de jinek tune û têkoşîna wan jî têkoşîna li dijî dewletê û vê hişmendiya wê ye. Her wiha Ata, got ku jin digel zanîna xwe ya îdeolojîk tevlî pêvajoyê dibin û da zanîn ku aramnca van bilindkirina têkoşîn û birêxistinbûna azadiya jinan e, lewre jin çiqas birêxistin bibin wê ew qas bikaribin hişmendiya dewletê a şerxwaz biguherîne. Ata da diyar kir ku armanceke wan a sereke jî teşîrkirina hişmendiya şerxwaz a dewletê ye û ew ê agahiyên xelet ku ji hêla dewletê ve bi raya giştî re parve dikin derxînin holê.

**"KJA hemû jinên Kurdistanî dihewîne**

Ata, behsa pêkhateyên KJA'yê JÎ kir û got ku KJA hemû jinên ji derûdorên Kurdistanî di bin bana xwe de dihewîne û got ku jinên ku li Kurdistanê dijîn ne tenê jinên kurd in, jinên asûrî, ermenî, êzdî, bawermend, ji derûdorên kedê, jinên di sazî û dezgehên civakî de birêxistî ne jî tê de ne û bi rêxistineke wek platformê jinan xwe di fermiyetê de dane qebûlkirin. Ata, destnîşan kir ku digel rêxistîbûna jinan, yek ji armancên wan a girîng jî ev e ku hêz bide pêvajoya çareseriyê ku di van demên dawîn de ketiye xeterey û wiha pê de çû, "Her wiha jinên di vê rêxistinê de têkoşîna xwe didomînin dixwazin şêweya têkiliyên xwe bi dewletê, bi jinan ve û bi derûdorên zêradndî ve zelal bikin."

**"Jinên cîhanê Kobanê silav kiririn"**

Ayla Akat Ata, di warê têkoşîna azadî û berxwedariya jinan a maweya sala 2014'an de xebatên ku hatine kirin jî nirxand û wiha dawî li axaftina xwe anî: "Sala 2014'an dû rastiyên bi êş û azar ên jinan li ber çavên hemû jinan raxist. Yek jê ev bû ku jinên Şengalê ji ber ku ne bi rêxistinbûn li Şengalê ew tofan hate serê jinan. Jinên li bazarên koleyan hatin firotin, hatin revandin û hatin kuştin. Ya didûyan jî rastiya jinên birêxistî bû li Kobanê ku got ez axa xwe, zimanê xwe, welatê xwe diparêzim û rahişte çekê. Ev herdu diyarde jî bandorê dike li ser perçeyên din ên Kurdistanê, Rojhilata Navîn û cîhanê. Tevgera Jinan a cîhanê xwedî li nirxên ku li Rojava deng vedan derket û ji Fransa'yê heta Emerîka'ya Latînî silav ji têkoşîna Kobanê hat. Lê em dizanin ku rastiya jinên têkoşer a Kobanê xwe ji têkoşîna azadiya Kurdistanê xweyî kir û dewletê ji ber vê ye ku DAIŞ û YPG/YPJ kir yek, lê ev ne pêkan e. Heke em tenê ji perspektîfa jinan ve DAIŞ û YPG/YPJ binêrin wê bê dîtin ku ev, ne wek hev in. Em baş dizanin ku birêxistîbûn çi ye nebirêxistîbûn çi ye û me birêxistinbûn hilbijart"





## Mele Evdilayê Timoqî

# Oldar û şoreşger

Evindar Tekin

Bêguman li ser Xaka Kurdistanê gelek têkoşerên welatparêz, çalak û wêrek welidîne ku di dîroka Kurdistanê de bi qasî qedr û qîmeta xwe nehatine nasîn. Yek ji wan kesayetan jî Mele Evdilayê Timoqî ye ku di ciwantiya xwe de tevlî serhildana Şêx Seîd bûye û heta dawiya emrê xwe jiyana xwe di nav tevgerên wekî Xoybûn, KDP, PKK'ê de bi têkoşînan, bi heps û zindanan, bi xwendin û haydarkirina gelê xwe derbas kiriye. Me jî bo xwendekarên Basnûçe'yê, xwe gihand neviyê wî Şîmel Beyik û guh da jiyana Seyda.

**Serhildan, Binxet û Xoybûn**

Seydayê Mele Evdilayê Timoqî, di sala 1897'an de li herêma Xerzanê li gundê Timoqê hatiye dinê. Di dema tevgera Şêx Seîd de hîn ciwan bûye û piştî ku li Meclîsa Duyem hebûna kurdan hatiye înkarkirin, Seyda, dev ji meletiya fermî berdaye û ketiye nav têkoşîna Şêx Seîd. Piştî vê, di rêxistina Xoybûnê (1927) û serhildana Agirî de cih girtiye. Di salên Xoybûnê de, digel Mele Evdilqudûsê Cemîl, têkilî bi Binxetê re danîne û ji sala 1926'an heta 1938'an di tevgera Mala Eliyê Ûnis (Sasûn) de cihê xwe digire. Di sala 1926'an de piştî Xoybûn xwe fesih dike û PDK tê avakirin, Seyda jî heta 1957'an di nav de cih digire. Pişt re, di sala 1949'an de li herêma Silîva tê girtin lê di encamê de serbest tê berdan. Di 1965'an de PDK-Tirkiye hat damezirandin. Yek ji rêvebirê PDK'ê ew bû û bûbû rêvebirê herêma Xerzan. Ji wê çaxê heta 1971'an (Cunta) 9 meh fîrar dibe û tê girtin, li dadgeha Amedê dîsa doza wî didome. Di dema efûya 74'an de ew jî tê berdan. Di salên 85-86-87'an de li Kurdistana Bakur, gelek mîtîng çêdibin Seyda jî di temamî de cih digire.

**Li Timoqê pirtûkxaneyeke mezin şewitî**

Li gundê Xêtika Timoqê ji xeynî mala Seyda tu mal tunebûn. Pirtûkxaneyeke Seyda hebû ku ji dîroka dinyayê bigire heta dîroka jinan, dîroka îslamî, dîrokên temamî dewletan têde bûn. Seyda tiştekî ji mala xwe re nedistend. Tenê xwarinvexwarin ji bo mêvanan. Guh nedida malê dinyayê. Çi pereyên wî hebin tev didaye pirtûkan. Pirtûkxaneyeke gelekî mezin li mala Timoqî hatiye avakirin. Gava dewlet êrîşî mala wî dike, zarok û derûdorên wî berî her tiştî pirtûkên wî vedişêrin. Bi hezaran pirtûkên wî di bine erdê de bi vê minesebetê dirizin. Ên ku ji bûyera 85'an xilas dibin jî ji aliyê malbatê ve têne parastin bes di sala 1994'ande kurê wî (bavê Şîmel Beyik) di şer de jiyana xwe jidest dide û dewlet mala wan jî dişewitîne û pirtûk û nivîsên wî tev têne şiwitendin.

**1985: Bûyereke kambax**

Şîmel Beyîk, behsa bûyerên ku di sala 1985'an de qewimî kir û wiha got: "Wê demê berpirsê PKK yê herêma Xerzan Ali Ozansoyê pismamê Hanifi Avciyê ku gerînendeyê îstîxparata wê demê bû, digel Şehîd Cahît, Berîvan (xuşka Şemdîn-Sırrı Sakık) tê girtin. Ali Ozansoy, teslîm bûye û ji dewletê re behsa malbatê kiriye. Bavê min, apekî min, 2 pismamên min 40-45 rojin di binçavan de diminîn û gelek tahde li wan tê kirin û xanî bi dînamîtê hatiye teqandin. Seyda, wê çaxê ne li mal bûye. Gava hatiye mala xwe dîtiye, çûye û cardin venegeriyaye. Navê xwe kiriye Mela Evdirehman Tewfîq (Tewfîq navê bavê wî ye) di nav milet de geriyaye. Pişt re derbasî Başûr dibe, bes li wir jî aramî tune, şer heye. Li wê derê wî dibin Lijneya Amediyê bi cih dikin. Piştî ku şer pir sor dibe, wî dişînin Laqayek (Rojhilat) li Nehiya Zêwê li cem Îdrîs Barzanî. Îdrîs Barzanî wî dike Rêvebirê Yekîtiya Alimên Kurdistanê. Mele Evdilayê Timoqî 5 salen nahêle ku dewleta Îranê bikeve nav daw û dozên di nav kurdan de. Bûyerên di nav milet de ew çareser dikin, nahêlin bigihîje dadgehên Îranê. Piştî ku navbera partiyên kurd û dewletê nebaş dibe, dewleta Îranê, seyda digire û wî diavêje Zindana Derya (Urmiye), 76 rojan girtî dimîne. Piştî derketiye 45 rojan Seyda nikaribûye bimeşe ji ber tahde û zêrandinan."

**Li Rojava Seydayekî têkoşer: Welat dayîk e**

Ji Rojhilat Seyda, derbasî Rojava dibe û 2 salan li wir dimîne. Xebatên têr û tijî dike, cihek namîine ku Seyda neçûbe nexebitîbe. Li Şamê, bi Abdullah Öcalan re rûniştiye û axiviye. Gelek Konferansan dide û şîretan li gerîlayan dike. Rojekê, jê re yek dibêje, "Seyda, ên mîna te li malê rûdinên, bi rojî û nimêjê re mijûl dibin, tu hatiyî li van çol û çiyayan têdikoşî" Seyda wisa dibersivîne: "Ferz bike, tu li malê yî, li ser Nimêjê yî, hinek tên êrîşÎ diya te dikin. Tu yê Nimêja xwe dewam bikî an diya xwe biparêzî?" Dibêjin, bêguman ezê pêşî diya xwe xilas bikim. Seyda dibêje: "Av û axa meriv, zimanê meriv jî weke diya meriv e. Heta ku meriv welatê xwe neparêze tu mana wê îbadeta ku meriv dike tune ye." Seyda, Li Akademiya Mahsûm Korkmaz ku li Beqaayê ye, digel öcalan, konferansekê dide gerîlayan û heya mirina xwe, li Rojav dimîne. Di 2'ê sibata 1922'an de li Hesekê li nexweşxaneya Mala Dawûdê Şewêş, qeyrana dil derbas dike û wefat dike. Cenazeyê wî di 6'ê sibatê de ji aliyê hezaran însanan ve tînin Dirbesiyê li gundê Berkevirê vedişêrin. Her wiha Seyda, di sala 1958'an de çaxê Barzanî ji Sowetê tê heya 1965'an bi tevgera Başûr re jî xebitiye. Serokê Komîteya Herêma Xerzan bûye û tevlî mîtîngên ku ji hêla DDKO û TİP Û KDP'ê ve dihatine lidarxistin dibe.

**Felsefeya Timoqî**

Felsefeya wî li ser îslamê wiha bûye: Dînê xwe îslamê baş nas bikin, heke hûn dînê xwe baş nas nekin wê dijminê we bi dînê we li we bixe. Seydayê li her çar perçeyên Kurdistanê navdar, çaxê Prensîbên Wilson, bangî kurdan dike: "Mafê kurdan jî heye ku çarenûsa xwe tayîn bikin. Çima kurd bûne 4 perçe. Heqê kurdan heye ku bibin yek perçe û bibin xwediyê dewletekê û bi demokrasiyê îdareya xwe bixwe bikin." Her wiha Seyda pir qîmetê dide jinan, xwişka wî jî di nav tevgerê de wezîfedar dibe û bi saya wê gelek mirov bêşdarî têkoşîne bûne. Seyda digotiye; "Jin di nav xwe de jiyana nû ava dikin û digotiye wê rojek were, cenaze dê li ser jinan rabin, jin wê bikevin bin tabûtan. Wê çaxê bila her kes ji kurdan bitirse. Çaxê ku yekîtiya kurdan pêk hat, kes bi kurdan nikare." Seyda pir qîmetê dida xwendine, çaxê fîrar dibû û li nav milet de digeriya zarokan dida xwendin, dibêje: " Bila pênûsa we saxlem be. Aniha Kurdistan ava bibe, heke bijîşk, mamoste, parêzer ne ji we bin, çima navê Kurdistanê dimîne." Rojekê, bo cihekî ku an lê mizgeftekê ava bikin an jî dibistanekê, qeymeqamê Silîva dibê emê ji Seyda bipirsin jixwe ewê bibêje bikin mizgeft. Seyda dibêje dibistanê ava bikin, îbadet meriv dikare li her cihî bike lê xwendin tenê li dibistanan dibe. Her wiha Seyda, pir têkildarî wêjeya kurdî dibe, bi bandora wî, zarokên wî giş 10 Dîwanên Cegerxwîn bi jiberkî dizanin. Ji ber kesayetiya demokrat, Kongreya Cıvata Demokratîk a Îslamê, li ser navê Mele Evdilayê Timoqî hat lidarxistin. Li gor agahiyan wî pir qîmet didaye hemû baweriyan, gelek hevalbendên wî yên ermenî hebûne ku pê re tevdigeriyane.



Mehmet Gültekin

# Belgeyên di arşîva Prof. Ferdinand Justi de

Peywendiyên di navbera welatên rojhilat û roavayê ji têkiliyên li ser bingeha rêwîtiyên bi mebesta bazirganiyê yên ku ji kûraniya dîrokê pêva dimeşiyan û ji ber şerên ku dem bi dem di navbera wan de diqewimîn peyda bûbûn. Piştî ku Împaratoriya Rûsya'yê di destpêka sedsala 19'an da daket Kafkasya Başûr her çiqas gelek şer di navbera wê û kurdan de qewimîn, kîjan gelek caran bûn sedema wêrankirin û koçberiyan, lê pê re têkiliyên li ser bingeha hevdunaskirina gelan û lêkolînên derbarê zanyariyên wan de jî pêkhatin.

Bi vî awayî şerên di salên 1803-1830'an yên di navbera osmanî, Îran û Rûsya'yê de hêzên Împaratoriya Rûsya'yê hin herêmên Kurdistanê wek Serhed û bakûrê Îranê jî dagir kirin. Dema ew li van herêman diman civaka kurd bala hin gerok û zanyarên Rûsya û welatên roavayê kişand. Serbazê artêşa Rûsyayê Alexandr K. Ushakov hîn di wan salan de di pirtûka xwe ya bi navê "Dîroka seferên di salên 1828-1829 an de li rohilatê Tirkiyeyê de" bang li zanyaran dike ku kurd miletekî qedîm yê vê herêmê ye, lê belê hê jî di derbarê bawerî, ziman û dîroka wan de lêkolînên berfireh nehatine amadekirin, ger ev yek pêk bên, wê demê li ser dîroka kevnare ya Asyayê de wê rûpeleke nû vebe. Bi vî awayî lêkolînên zanyarên rûs û welatên roavayê yên derbarê etnografya, ziman, hûner û wêjeya kurdî de bi berfirehî destpêkirin û di seranserê wê sedsalê de sal bi sal bi pêşde çûn.

Hin di sala 1830'î de Felician Martin von Zaremba (1794-1874) ê polinî di çarçova xebatên mîsyoneriyê de bi salan li Kafkasya başûr û Serhedê geriyabû û li ser vê rêwitiya xwe gotarek jî çapk kiribû. Ew di nivîsa xwe de gelek agahiyên balkêş di derheqê ziman, etnografya û baweriyên kurdan de şirove dike. Ew qala rasthatin û têkiliyên xwe yên bi Mela Mehmûd Bazîdî re, ya Nûbihara Xanî û wergera Tevratê ya bi ser zimanê kurdî dike ku ev salixadayînên wî bo me wek agahiyên pêşîn ji van herêman gelek girîng in.

Dema Peter Lerch di salên 1850'an de li St. Pêtersbûrgê li ser zimanê kurdî xebat dikir, serokê Akademiya Asyayê Prof. Dorn bona ku ji wî ra nimûneyên bi kurdî peyda bike bi nameyekê serî li konsolosê dewleta Rûsyayê yê li Erziromê Aleksander Auguste Jaba ê polinî da û daxwaza nivîsên zimanê kurdî kir. Jaba, wek diyar e hin beriya vê daxwazê bala xwe dabû zanyariyên kurdî û dest bi hînbûna ziman û berhevkirina nimûneyên wêjeya kurdî kiribû. Ew di sala 1956'an de Mela Mehmûdê Bazîdî, yê ku ji ber şerê di wan salan de koçberî vî bajarî bûbû, nas dike û ji wê pêve xebatên xwe bi piranî bi wî re dimeşîne. Jaba berhevok û xebatên xwe bi piranî ji akademiya li St. Petersbûrgê re şiyandibû û ew li wir hatibûn arşîvkirin. Ji wê demê pêve ye ku navê (Aleksandre) Auguste Jaba ji aliyê biyanî û Kurdan de wek kurdologê sereke di dîroka zanyariyên kurdî de tê bi bîranîn.



Hin xebatên Auguste Jaba jî hebûn ku parek ji wan di kovarên ewrûpî de hatibûn weşandin û hinek jî di arşîvên wek ya Prof. Ferdinand Justî mabûn ku piraniya wan heta niha ronahî nedîtine. Jaba di sala 1859'an de destana Siyahmed û Xemsî di kovara firansizî Journal Asiatique de weşandibû. Destan bi xebateke akademîk, bi kurdiya bi alfabeyên erebî û latînî her weha bi wergera wê ya firansizî ya bi destê Jaba de hatiye çapkirin (Ballade Kurde, Journal Asiatique, cild XIV, Paris 1859, s. 153-166). Ev cara pêşîn bû ku destaneke navdar ya kurdî û pêre ew bi zimanê kurdî di kovareke sereke de li roavayê dihat belavkirin. Em heman destanê bi hin guhartinên piçûk piştre di pirtûka wî ya bi sernavê Recueil de notices et récits Kourdes de jî dibînin ya ku di sala 1860'î de hat çapkirin.

Piştî ku karê Jaba li Erziromê qediya, ew li bajarê Îzmirê bi cîwar bû û li wir jî xebatên xwe yên kurdnasiyê berdewam kir. Jaba bi profesorê almanî yê rohilatnas Ferdinand Justî re jî ketibû nav tevkarî û dan û standinên zanyariyên kurdnasiyê. Ji ber ku Prof. Justi di beşa Oryantalîstîk li zanîngeha bajarê Marburgê de mamostetî karibû, min di arşîva Dewleta Almanya ya li wî bajarî de lêkolîna bermayiyên wî kir. Prof. Ferdinand Justi bi xwe jî pisporekî zimanê kurdî bû û wî di sala 1880'î de pirtûkeke li ser gramera kurdî ya ji 258 rûpelan pêkhatî weşandi bû. Di arşiva Prof. Justi ya li Marburgê de ez rastî gelek nameyan hatim ku Jaba ji bo Justi şiyandibû ku di nav wan de hin agahiyên gelek balkêş henin yên ku heta niha ronahî nedîtine.

Tarixa nameya Jaba ya pêşîn ji roja 09.07.1879'an e û ya dawîn jî ya ji roja 22.01.1881'an e. Di nameyeke xwe da Jaba ji Prof. Justi re dinivîse ku hin xebatên kurdî di destê wî henin ku ew dixwaze wan jî amade bike û bişîne, bona ku Justî wan di kovaran de bide çapkirinê, lê belê van deman tendrustiya wî geleki xirab bûye, bi taybetî jî dest û piyên wî êdî baş negirtine. Jaba dibêje, lê dîsa jî ew hewl dide ku hin nivîsan amade bike û di kovaran de biweşîne

Jaba tev nameyên xwe du nimûneyên gelek balkêş jî ji Prof. Justi re şiyandiye. Yek ji wan nivîseke Mela Mehmûd Bazîdî ye û ji sê û nîv rûpelan pêktê. Jaba destnîşan dike ku ev nivîs beşeke ji kitêba Mela Mehmûd ya "Dîroka Kurdistanê a nûjen" e. Wek eyan e, ev pirtûka Mela Mehmûd heta niha winda ye û di destê me de tenê pêşgotina wê heye. Ango ev dibe nimûneyek nû ji vê kitêbê û nişana wê yekê ku di wan salan de, dema Jaba li Îzmirê jiyan dikir, ev pirtûka Mela Mehmûd hin li bal wî bû.

Di vê beşa dîroka Kurdistanê de Mela Mehmûd qala şer û pevçûnên di navbera endamên ji malbata serwerên sancaqa Bazîdê di salên dawîn yên sedsala 18'an dike. Ev pevçûn bi taybetî di navbera kurê Îshaq Paşa ê bi navê Mîr Mehmûd û kurapê wî Xelîl Begê de qewimîne. Mîr Mehmûd wê demê xwe amade dikir ku piştî mirina bavê xwe ê ku êdî gelekî kal bûbû bibe hukimdarê sancaqê. Xelîl Beg jî kurbirê Îshaq Paşa, kurê Abdî Begê bû yê ku di salên 1767-1771'an de serweriya Bazîdê kiribû. Hin belgeyên Osmanî yên ji wê demê jî henin ku van qemandinan piştrast dikin. Her wisa ev bûyeran ji aliyê dengbêjên herême de wek destaneke epîk bi navê "Xelîl Bego" jî hatiye sêwirandin û di nav civakê de belavkirin.

Di nameya xwe ya ji roja 22.01.1881'an de jî Jaba ji Prof. Justi re dinivîse ku ew li gel vê nameyê parek ji berhevoka dilokên kurdî bi sernivîsa "Istranêt Kurdî" dişîne bona ku ew bi alîkariya Justî di kovarekê de bên çap kirin.

Ev berhevok ji 21 dilokan û her dilokek ji wan jî ji sê rêzan pêktê. Ji gelek navên cî û waran yên ku di dilokan de derbas dibin û bi piranî jî ji devoka kurmanciya wan diyar dibe ku ew li herêma Bazîdê hatine berhev kirin. Her weha ji berhevdana rastnivîsa kurmanciya wan û ya nivîsên cuda ên Mela Mehmûd eşkere dibe ku ev dilok bi destê Mela Mehmûd ji zargotinê bo nivîsa li ser rûpelan hatine amadekirin. Di nivîsa Jaba de li aliyê rastê dilok bi alfaba erebî û li aliyê çepê jî bi latînî hatine danîn. Jaba her weha di bin rûpelan de jêrenot jî daniye ku wî di wan de wateya hin peyvan şirove kiriye. Jaba piştre jî wergera dilokan bi ser zimanê fransizî nivîsîye. Diyar e Jaba wergera van dilokan hema çend roj beriya şiyandina nameya xwe amade kiriye. Jaba di rûpela pêşîn ya dilokan de sernavê „Istiranêt Kurdî" û di bin de jî tarixa wan bi hîcrî û rûmî nivîsandiye. Tarîxa hîcrî 23. Safer 1298 e ku tê beramberî ya mîladî 25.01.1881 û ya rûmî 11. Kanun-i Sanî 1296 jî bi mîladî dibe 23.01.1881. Di rêza dawîn ya vê rûpelê da jî „Istranên Kurmancî" hatiye nivîsîn. Di rûpela dawîn ya wergara dilokan ya bi ser fransizî de jî Jaba tarixa 15.01.1881 daniye.



Lîsa Deysem

# Şanoya kurdî li bin banekî dicive



Li qada şanoya kurdî ku bingeha dahatûya xwe tevî bêderfetî, astengî û pirsgirêkên mezin diavêje bi xebateke nû asta xwe digihîjîne pêpelokeke ber bi jor ve. Komên şanoya kurdî yên cûrbecûr û bi taybetî jî komênku di bin bana Navenda Çanda Mezopotamya'yê de xebatên xwe didomînin bi avakirina Meclîsa Şanoyê ya Kurdistanê li hev kom bûn.

Komên şanoyê yên li cihên ku şaxên Navenda Çanda Mezopotamya (NÇM) hene ên wekî Stenbol, Dîlok, Agirî, Colemêrg, Wan, Mersîn, Sêrt, Şernex, Silopî, Nisêbîn, Cizîr, Weranşar û Şanoya Şaredariya Amedê, Şanoya Bajer a Batmanê û Navenda Dîcle Firatê, bi armanca komên şanoyên ku li Kurdistan û Stenbolê çalak in bînin cem hev û nirxên çandî û hunerî yên Kurdistanê derbasî dikê bikin, di 3'yê Tîrmehê de Meclîsa Şanoyê ya Kurdistanê avakirin. Şanogerên kurd kêfxweşiya bi mebesta avakirina şanoyê nîşan didin û tînin zimên ku wê şanoya kurdî bi vê xebatê li ser dikê bihêztir bibe.

> "5 heb li Stenbolê yek jî li Batmanê 6 heb komên taybet hene. Pirsgirêkên komên taybet û ên saziyan cihê ne. Li ser navê koma xwe dikarim bêjim ku pirsgirêka sereke kêmbûna lîstikvanan e ku giş bi dildarî dixebitin, kom, qursan vedikin û bi derfetên xwe wan perwerde dikin û bi bilêtfirotinê û bi vê rewşê kes nikare komên taybet li ser piyan bihêle, lewre lîstikvan jî yekser bi aboriyê ve girêdayî ne."



### Baran Demir: Şanoya kurdî ji wêjeya kurdî dûr e

Ji şanogerên kurd Baran Demîr destnîşan kir ku şanoya kurdî têra xwe ji wêjeya kurdî sûde wernagire û ji hev jî haydar nîn in, hev temaşe nakin û divê şanoger wêjeya kurdî bixwînin, çîrokan veguhezînin dikê. Demir got ku di sala 1999'an de NÇMyê, çîrokên Helîm Yûsif ên bi navê Komara Dînan û Şermola derxistibûn û gelekî serkeftî bûne û wiha domkir, "Pey wê jî min Epîloga Hesenê Metê derbasî dikê kir, her wiha Mem û Zîn jî di warê şanoyê de cihê xwe girt, ev xebat giş serkeftî bûn lewre bingeha xwe ji wêjeyê girtibûn, bes têr nîne." Heri wiha Baran Demir diyar kir ku ji ber giraniya berpirsiyariya wê, şanoger newêrin klasîkên kurdî derbasî dikê bikin, lewre deqên giranbuha ne û di nav gel de giraniya wan heye, şanoger ji vê yekê ye ku newêrin wan bikin şano. Demir da zanîn ku ew dixwaze Kela Dimdimê bike şano lê derfeta wî tune, bo nimûne Mem û Zîn, tevî 65 şanogeran, bi aksesuar û dekorên baş derket, bi derfeta Şaredariya Amedê ev xebat serkeftî bû.

### "Şanoyên taybet di meclîsê de tune ne"

Demir got ku 17 komên şanoyê di vê meclîsê de gihîştine hev bes komên taybet ne têde ne. Her wiha Demir bale kişand ku ev komên şanoyê jixwe di bin banekî de bûn û têkildarî hev bûn, wê 3 mehan carekî bicivin û li ser pirsgirêkên şanoyê bişêwirin. Demir got ku berê jî Konferansa Şanoya Kurdî hatibûye lidarxistin û hin biryarin hatibûne girtin bes yek ji wan jî nehatine bicîhkirin, bo nimûne di wir de hatiye gotin ku muzeyek ji şanoya kurdî re bê avakirin çênebû, derfet hebe jî ji ber pergala hêyî bi cih nabe.

### Şanoyên taybet û ên girêdayî saziyan

Demir got ku 2 cure kom hene di şanogeriya kurdî de, komên taybet ên ku bi derfetên netêr dixebitin û ên girêdayî sazî û dezgehan ku ji hêla saziyan ve tên finansekirin û derfetên wan baş in û wisa domand: "5 heb li Stenbolê yek jî li Batmanê 6 heb komên taybet hene. Pirsgirêkên komên taybet û ên saziyan cihê ne. Li ser navê koma xwe dikarim bêjim ku pirsgirêka sereke kêmbûna lîstikvanan e ku giş bi dildarî dixebitin, kom, qursan vedikin û bi derfetên xwe wan perwerde dikin û bi bilêtfirotinê û bi vê rewşê kes nikare komên taybet li ser piyan bihêle, lewre lîstikvan jî yekser bi aboriyê ve girêdayî ne." Demir qala şanoyên bi sernivîsan kir û got ku bo temaşevanên tirk, hin komên Stenbolê (Seyr-i Mesel, Avesta, Destar) bi projreksiyonekê, tirkiyên axaftinên kurdî li ser dikê didin nivîsandin ku êdî temaşevan, lîstikê temaşe nake bes nivîsen tirkî dixwîne, ev jî pirsgirêkeke din e" Heri wiha Demir da zanîn ku aniha li Bakur, perwerdehiya şanoyê a bi awayekî rêkûpêk û sîstematîk naye dayîn, konservatuara şanoya kurdî, di sala 1991'an de li Stenbolê destpê kiriye û ev komên taybet jî ji wir derketine.

### "Divê huner azad be"

Demir qala vê konservatuarê kir û wisa domand: "Me, wê demê li NÇM'ê şanoya sîstemê û hişmendiya wan qebûl nedikir, ji vê bonê li konservatuara dewletê me nexwend. Lewre ew, şanoyê dixin qalibekê." Demir got ku divê huner azad be, xwe jî civakê jî rexne bike, ne ji bo reşkirinê, ji bo avakirin û sererastkirinê û wiha pê de çû, "Huner li her derê dinyayê, muxalîf e. Şanogerên karmend yên girêdayî saziyan weke robotan in û ev di lîstikan de jî xwe dide der. Alîkarî pêwîst e, meaş ne. Divê hunermend nebe karmend. A diduyan jî şanogerên saziyan, ji ber derfêtên mezin, dekor, aksesuar û hwd. xurt dikin û tu tişt ji şanoger re nemîne, ev yek afirîneriyê jî têk dibe. Gava şanoger di nav tunebûnê de hunera xwe dike, hê baştir dilîze, lewre mecbûr dimîne." Her wiha Demir qala çavkaniyên şanoya kurdî jî kir û got: "Yek ji çavakniyên şanoya kurdî ji a şanoya gelêrî ye ku bê di dawetan de dihat lîstin. Wek Kose, Buka Baranê. Di sala 1919'an de cara yekem Evdirehîm Rehmî Hekarî Memê Alan bi nivîskî nivîsandiye. Li Emerîkayê bilêtekê ji 1950'an de belavkirî tê dîtin ku li serê 'Kurdish Drama' dinivîsand. Li wê derê mîhrîcanek tê lidarxistin, di wêneya wê de dîmenek ji çanda Rojhilata Kurdistanê bû. Wekî din di nav salên 1937-1947'an li Elegezê şanoya kurdî tê lidarxistin, gelek şano çêdibin ku piraniya wan ji wêjeya gelêrî sûde wergirtibûn. Piştî vê, di sala 1979'an de li Gurcîstanê Şanoya Kurdî ya Dewletê ava dibe heta 1991'ê didome. Ev 3 sal e ku haya me ji kurdên Sovyetê çêbû û me lîstikeke Şaliko Bêkes derxist."

### Şanogerên kurd, nikarin kurdî bixwînin

Çetoyê Zêdo jî li ser pirsgirêkên şano û şanogerên kurd rawestiy û da zanîn ku di serî de pirsgirêk ev e ku şanoger, bi kurdî nikarin bixwînin, çavê wan hînî xwendina kurdî nebûye. Her wiha Zêdo da zanîn ku şanogeriya kurdî ji bilî Şanoya Şaredariya Amedê bi awayekî pisporî naye meşandin û îro serkêşiya şanoya kurdî ew dikin. Her wiha Zêdo got ku ew jî tê de 3-4 heb diramaturgên kurd, li Şanoya Bajêr a Stenbolê dixebitin û ev yek bo şanoya kurdî avantajek e û her ku diçe ji hêla akademîk ve xurtir dibin. Zêdo behsa pirtûka li ser dîroka şanogeriya kurdî jî kir û got ku wê di demeke nêz de ji Weşanxaneya Peywendê derkeve. Her wiha Zêdo got şanogerî li her deverên cîhanê an di nav saziyên dewletê an ji ên şarederiyan de tê kirin û derfetên van saziyan rê li ber şanoyê vedikin. Zêdo her wiha bale kişand ku şano an huner luks e û meriv nikare ji yekî karker re bêje tu çima naçî şanoyê û her wiha şano bajarvaniyê jî dixwaze.

Her wiha Zêdo destnîşan kir ku şanogeriya kurdî bi statuya kurdan ve girêdayî ye, şanogerên kurd jî ji bêstatutiyê direvin û xwe diavêjin şanoya tirkî. Zêdo bale kişand ku li gelek navendên Kurdistanê eywana şanoyê tune ye û ên hêyî jî carinan têrî hin lîstikan nake. Ji bilî van, Zêdo diyar kir ku şanogerên kurd, ji bilî ziman û wêjeya folklorîk ku ji dê û bavên xwe girtine, bes ji deqên nivîskî sûde wernagirin a girîng ev e ku tu wek lîteraturekê lê binêrî ku kîjan çavkanî hene ku tu xwe bigihînî wan. Zêdo wiha domkir, "Bo nimûne wergera ji Soranî ne karê min e bes ez dikim. Şanoya Şaredariya Amedê karekî baş dike û xwezî hejmara saziyên bi vî rengî zêdetir bibe, şanoyên taybet weke ên ku dibêjin çima dewlet me xweyî nake gazinan dikin ku dibêjin me venexwendine, bila ew biçin xwe beşdarî meclîsê bikin, polîtikayên her sazî û dezgehan hene û ên dilxwaz bin bila biçin têkevin Şanoya Bajar a Amedê."

# Huner ji dewlemendiya hunermend dizê



Mehmet Emin Kan

**Her bûyer û serpêhatiyên ku li hemberî gelê min û welatê min pêk tên min bi dil û can û şewat elaqedar dike. Heza min a hunerî û kurdewarî jî ji vê rastiyê tê.**

Hunermend Alîn Rojava ku yek ji nifşên nû yên Ewropî yên kurd e, li gel ji zaroktiya xwe ve di nav kar û xebatên mûzîkê de cih girtiye jî, li Ewropayê ji bo berjewendiyên gelê xwe kar û xebatên dîplomasiyê jî kirî ye. Alîn Rojava'ya ku keça malbateke kurdewar e li Ewropayê hewl daye di hunerên ku ew xwe tê de şareza dibîne de, xwe wek akademîk jî bigihîne û şarezayiyên xwe bi pisporî pêk bîne. Alîn li gel dîplomasî û mûzîkê, her wiha di zaningehan de beşên Tib û dansên rojavayî jî xwendiye.

Hunermend Alîn Rojava yek ji hunermendên nifşa nû ya kurdên Ewropadîtî ye. Li gel hemû derfetdariyên meylên wundabûn û biyanîbûnê jî wê li ber xwe daye û kurdewariya xwe parastiye. Alînxan'a ku li Rojavayê Kurdistanê li Dêrika Hemko hatiye dinyayê ji zaroktiya xwe ve ji ber meyldariya xwe ya zêde ya ji mûzîkê, di nav kar û barên mûzîkê de xwe gihandiye. Piştî çûye Ewropayê jî van tecrûbeyên xwe ne havêtiye aliyekî û wan geşandiye. Alînxan'a ku li zanîngehên Almanyayê fakulteyên Huner û mûzîkê û her wiha dansê xwendiye çîroka xwe ji me re wiha vegot:

"Ez jiyana xwe ya şexsî û hunerî bi şêweyeke endazyariyê bi rêve dibim. Ez li gel mûzîkê kar û têkîliyên dîplomatîk û dezgehî jî bi rêve dibim. Me di salên dawî de, têkîliyên baş bi dezgehên Almanî û Ewropî re danî. Hem di qada siyasî hem jî di qada medyayî ya Alman de, me karibû heta radeyekê pirsgirêka kurd bi wan bidin qebûl kirin. Ev pêwendî bandorê li mûzîka min jî kir. Stran û klîpên min di televîzyon û rojnameyên Almanî de cih girtin. Divê hunermend ne tenê dengbêj be, hunermend her wiha nûnertiya wîjdanê mirovahiyê û şaristaniyê jî bike. Bi taybet hunermendên kurd divê, heza gelê xwe yê hejar û neçar di kesayeta xwe de hest bike. Bi wî awayî hunermend bi dengê xwe, muzîka xwe û ramanên xwe parasvaniya mafê civaka kurd û bi taybet bike. Bêguman, di civaka me de dema jinek şarezayiya xwe têdigihîje, hewl dide ku vê şarezayiya xwe pêk bîne û bi nav û deng bide, li hember wê pirsgirêk û êrişên dijwar pêk tên.Nexasim, civaka me hê civakek feodal bavsalar e û hejmarek mezin ji mêran bi hevre dibin yek û hêza xwe ya feodal û hovane li dijî misqalik azadî ya jinê nîşandidin. Li vê derê, ev ne tiştek balkêş e û ez jî ne ew kes im ku li hember vê yekê serê xwe pêl bikim û vê nelirêtiyê qebûl bikim."

Alîn Rojava di derbarê şêweyê mûzîka xwe de jî diyar kir ku wê di dengê dengê xwe de mûzîka kurd a klasîk û şêweya pop a hemdem li hev goncivandiye. Alîn got: "Ji hunermendan tê xwestin ku herdem xwe ji nûve dîzayn bikin. Lê, ev nayê wê wateyê ku pêwîst e hunermend pîroziyên bûhageran di civak û çandê de winda bikin. Lê, car caran divê hunermend li gorî civaka navneteweyî û sivîlîzasyona nerm jî tevbigere û li nifşên nû yên ciwan ên hemdem, di kesayeta xwe de pêşan bide. Lê ez dibêjim; Berî her tiştî divê hunermend nifşên civaka me yên konservatîf û klasîk ji bîr neke û li civaka me ya resen û klasîk xwedî derkeve."



**'Almanya welatê min ê dûyem e'**

Alîn Rojava li ser ajoya xwe ya kurdeke mişextbûyiya Ewropayê jî anî ziman ku ew xwe wek hemwelateka kurd û alman hest dike, pir şanaziyê ji Almanya dike û Almanyayê wek welatê xwe yê dûyem dibîne. Alîn wiha dom kir: "Lê belê ev nayê wateya înkarkirina ku ez şanaziya xwe ya dîtbar bi welatê xwe Kurdistanê û gelê kurd dikim. Li dîasporayê bandorên girêdan û hestên min ên neteweyî û kurdewar barek mezin da ser milên min. Ji ber vê yekê jiyana biyanistanê hestên min ên neteweyî xurtir dike. Her bûyer û herserpêhatin li hembrê gelê min û welatê min bi dil û can û şewat min elaqedar dike. Heza min ya hunerî û kurdewarî jî, ji vê rastiyê tê. Êşa Şengalê, Kirkukê, Kobanê, Serekaniyê û tevahiya Kurdistanê, barê berpirsyariyek mezin dide ser milên min."

**'Zimannezanî ziyanê dide hemû beşên hunerê'**

Li ser rewş û geşedana mûzîka kurd jî Alînxan diyar kir ku muzîka kurd di qonaxeke baştir de ye, asta wê ya hunerî baştir bûye û vê têbiniya xwe anî ziman: "Lê hinek stranbêj hene, mixabin hem zimanê kurdî baş nizanin û hem ne ked û ne jî hêza wan a hunerî heye.Loma ziyanê didin ziman, mûzîk û hunera kurd. Huner, wêje û folklora gelerî û dîrokî wek av û masî bi hev re pêwendîdar in. Dema ku hunermend zimanê xwe yê zikmakî baş nizanibe, ew tene ziyanê nade zimanê zarokan û nifşên nû, di heman demê de ziyanê dide ruhê wêje û folklorê jî. Heta hestên neteweyî jî qels dike. Hunermend bi vê dûrbînê hem nûnertiya civakê dike, hem ya lîngûîstîkê û hem jî ya ragihandina civaka transformbar dike. Ji bilî van her wiha nûnertiya senkronîka gelê xwe jî dike. Hunermend, bi dengû henaseya xwe, gotinên stranê, giriyana nazdariya hewara jana qederê, jîrî, fonotîk û fonomîksê jî, di çarçoveya lîngûîstîkê de bikar tîne." Alîn Rojava da zanîn ku ji hemû mûzîkjenên kurd tê xwestin ku perwerdehî û akademiya hunerê bi ser rêbazên profesyonelî hîn bikin û rêbazên klasîk bi yên hevdem re bigoncivînin û ji nû ve hunerê biafirînin."

Li ser xebatên xwe yên mûzîkê jî Alîn Rojava axaftina xwe wiha domand: "Min heta niha 3 albûm derxistine, albûma mina 4'em jî li ber derçûnê ye û ji bilî albûman min heta niha 13 Klîpên bi zimanê kurdî , suryanî, asurî û ermenî weşandine. Anha jî, ez bi 2 klîpan re mijûlim. Yek ji bo straneke kurdî ye û yek jî ji bo strakeke zimanê înglizî ye. Xebatên min niha berdewamin , anha, ez 2 stranan bi zimanê kurdî û înglizî tomar dikim û amedekariyê ji bo klîpkirina van stranan didomin. Di siberojeke nêzîk de ew ê jî bêne belavkirin. Ev xebat, bi şêweyeke profesyonelî hatine kirin û ez an xebatan ji bo gelê xwe wek surprîz vedişêrim. Dema ku temam bibin ezê pêşkêşî mûzîkhez û hemû gelê kurd bikim. Her wiha, ez çend projeyên din jî, bi zimanê almanî, erebî û rusî jî amede dikim. Di mûzîkê de derfetên pirrengiyê zêde ne û bi van xebatên zimanê biyanî ez hewl didim ku van derfetan bikar bînim."

**'Profesyonelî ferz e'**

Aylîn Rojava, di dawiya axaftina xwe de balê kêşa ser sûda konsertên xwe ku ji bo danasîna çand, ziman û hunera kurd derfetên pir granbûha pêkan dikin û got: "Bername û konsêrtên ku ez heta niha tevlî wan bûme, sûdeke pir mezin li geşkirina têkiliyên sûdwer û danasîna doza gelê kurd û hunera kurd kirine bûne haacet ku ez bi cîhana azad re têkiliyan pêk bînim. Min feyzeke mezin ji van derfetan wergirt. Ev yek bi jiyana sirûştî û evîna mirovahiyê re jî eleqedar e.Weku hûn jî dizanin, pêwendiyên min ên li Almaniya, Ewropa û Kurdistanê, herdem ajandaya bernameyên min bi dezgehên reng reng re saz dikin û hemû kar û xebatên min ên hunerî bi rêya wan tê organîzekirin. Bernameyên min ên konsêrt û strancivînên ku bi ser van dezgehan re têne organîzekirin rastî eleqeyeke baş tê.